

2

رۆژنامەیەکی هۆڵەندی:

# هۆڵەندا سیخوڕی بەسەر کوردانەوە دەکات

Raporek nû ya Parlementoya Ewropayê:

## Divê piştgiriya Tirkiyeyê li dijî PKKê bê kirin!
3



Hejmar/Nr. 130
19 Çile / Januar 2012

# Rûdaw
ÇAPA EWROPA
Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

## Nêçîrvan Barzanî biryar da ku serokatiya hikûmetê werbigre



**Hewlêr (Rûdaw):** Sekreterê Polîtburoya Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK) Fazil Mîranî ji Rûdawê re diyar kir ku Nêçîrvan Barzanî xwe yekalî kir û biryar da ku serokatiya kabîneya heftemîn a hikûmeta Herêma Kurdistanê bike.

Fazil Mîranî ji Rûdawê re got: “Îro (17.01.2012) Nêçîrvan Barzanî biryar da ku serokatiya hikûmetê bike. Pêngava yekemîn a ji bo pêkanîna kabîneya nû: Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK) û Yekîtiya Nîştîmaniya Kurdistanê (YNK) wê ji bo dariştina bernameya hikûmeta nû bicivin.”

Li gor çavkaniyeke ji YNKê ji Rûdawê re gotî, YNKê biryar girtiye ku eger Nêçîrvan Barzanî postê serokatiya hikûmetê werbigre, wê Îmad Ehmed ji bo cîgirê wî bike namzet. Lê eger kesekî din ji PDKê werbigre, wê demê YNK wê namzetekî din diyar bike û hêjî ew kes nehatiye diyarkirin. Heman çavkaniyê derbarê Cîgirê Serokê Herêma Kurdistanê de jî got: “Polîtburoya YNKê di nava hewldanan de ye ku Berhem Salih wî postî werbigre. Lê eger wî post wernegirt, wê demê Ednan Mûftî namzetê YNKê ye ji bo wî postî.”



Wêne: Rûdaw

# Nêrgiza bêwar biwar dibe!
2






Great Britain

Nûçe, raport û hevpeyvînên taybet. Herroj, 24 saetan.

Rûdaw.net

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu



NÊRGIZ ji erdheja Wanê filitî lê bêwar ma

Bawer Çem Amed

Bebeka Şakir û Nazdar ku 7 mehî hate dinyayê, di erdheja Wanê de ji mirinê filitî. Dê û bav navê "Nêrgiz" li bebeka xwe danîn. Ji ber ku Nêrgiz ji mirinê filitî malbat pirr kêfxweş e, lê ji ber ku bê xanî, bê cih û war man jî pirr xemgîn in. Malbat, niha li benda alîkariya xêrxwazan e.

Şakir û Nazdar Ozgur ji gundê Gembola Qerqeliya Wanê ne. Bav bi şivantiyê debara xwe dike. Tam 11 sal berê Şakîr û Nazdar ji hev hez kirin û zewicîn. Lê pirsgirêkeke wan hebû, zarokên wan çênedibû. Ji bo ku zarokên wan çêbibe, divê bav Şakîr tedawî bibûya. Herduyan nexwar, venexwar, li xwe nekir, hemû pereyên xwe ji bo tedawiyê hilanîn. Tam 11 salan pere kom kirin. Bi pereyê ku civandin, bav Şakîr emeliyat bû. Piştî emeliyatê doktor weşxane jî hilweşiya. Lê bebek zor bela ji vê erdhejî filitî. Herkes li benda mirina bebekê bû, lê ew bi firokeya hawarçûyê rakirin Nexbeka wan a ewil e, dayîk Nazdar nexwestiye ji ba bebeka xwe veqete û wiha got: "Me ji dayîkê re got here Wanê, em ê li bebeka te salan bi zorbela zarokek wan çêbûye û naxwaze zaroka xwe wenda bike. Dayik Ozgur destnîşan kir ku li Wanê cihekî wan ê

Piştî hewldana 11 salan, Nêrgiz ji Şakir û Nazdar Ozgur re çêbû

Wêne: Rûdaw

# Xwendevanekî Rûdawê Nêrgiza bêwar biwar dike!

» Nêrgiz û malbata xwe di erdheja Wanê de bêwar man. Nûçeyek di Rûdawê de bû sedem ku xwendevanekî me ji Swîsreyê destê alîkariyê dirêjî Nêrgizê û malbata wê bike.

**Köln/Amed (Rûdaw) -** Nûçeyek rojnameya me Rûdawê derbarê malbatek erdhejzedeyên Wanê, malbateke kurd ya li Ewropayê dijî, xiste nava hewldaneke bi wate. Di hejmara Rûdawê ya 128. de, ya 28ê Kanûna 2011ê, di rûpela duyemîn de bi sernivîsa "Nêrgiz ji erdheja Wanê filitî lê bêwar ma" nûçeyek hevkarê me Bawer Çem ya ji Amedê hatibû weşandin. Di vê nûçeya dramatîk de serpêhatiya Şakir û hevjîna wî Nazdar a ku xelkên Wanê ne, hatibû nivîsandin.

Şakirê ku şivantî dikir û hevjîna wî Nazdar piştî zewacê xwestibûn bibin xwediyê zarok, lê ji ber pirsgirêkeke tendirustî ev yek çênedibû û wan jî nexwar û venexwar û keda xwe ya 10-11 salan civandin û bi alîkariya pizîşkan zarokek wan çêbû. Navê zaroka xwe danîn Nêrgiz. Pênc rojan piştî erdheja Wanê ku tê de Şakir û hevjîna xwe bêwar man , Nêrgiza biçûk du mehan beriya dema xwe, di meha 7ê de, ji dayîk bû. Piştî erdheja yekê bi çend rojan dîsa erd li Wanê hejiya û Nêrgiz li jêr çavdêriya pizîşan bi mirinê rûbirû ma û ew bi lez rakirina nexweşxaneyeke li Amedê. Lê piştî ku rewşa Nêrgizê baş bû, ewê bi kû de biçûye, êdî erdhejê malbat bêwar kiribû.

Xwendevanê Rûdawê Yusuf Polat û hevjîna wî li ser vê nûçeya Rûdawê xwestin alîkariya vê malbata neçar bikin. Malbata Polat ji Kurdên Konyayê ne û zêdeyê 30 sal in ku li Almanya û Swîsreyê dijîn. Li gor agahiyên ku birêz Yusuf Polat dane Rûdawê, ew bi malbatê re ketiye têkiliyê û ji bo destpêkê hinek pere jî wan re şandine Amedê. Herwiha wî amadekariya wê yekê jî kiriye ku di van rojan de malbat ji Amedê biçe gundê wî li Anatolya Navîn û ji bo demekê li wir di malekê de bicîh bibe. Yusuf Polat got ku ewê di van mehên pêş me de alîkariyê ji bo malbata bêwar mayî kom bike û ewê hewl bide alîkariya malbatê bike ku ew li Wanê dîsa malek xwe ava bikin, bi gotinên Yusuf Polat "xwedê bike, em ê Nêrgîzê bi war bikin".

Dê û bavê Nêrgizê ji bo alîkariya xwendevanên rojnameya me Rûdawê gellek kêfxweş bûn. Bavê Nêrgizê Şakir Özgür diyar kir ku ew ji bo alîkariyê gellekî kêfxweş in. Şakir Özgür anî ziman ku ew ê biçin Konyayê û wiha got: "Ji bo alikariya birêz Yusuf Polat em gellekî kêfxweş in. Êdî cihekî germ a Nêrgiza min heye. Piştî hesreta me ya 13 salan Nêrgiz hate dinyayê. Em naxwazin Nêrgiz ji dest bidin. Bila Nêrgiz bijî." Şakir Özgür dixwaze keça wî mezin bibe û bibe bizîşk.

Dayîka Nêrgiza biçûk Nazdar Özgür jî ani ziman ku zaroka wê bi zor û bela ji erdhejê xilas bûye û ew naxwazin êdî afateke wisa bê serê wan. Dayîk Nazdar dixwaze Nêrgiza ku ji nava kavilên erdhejê pişkivî, bi alîkariya xêrxwazan mezin bibe û wiha axivî: "Min pirr dixwest zarokek min çêbibe. Piştî 13 salan Nêrgiza min çêbû. Weke ku hemû dinya ya min be. Piştre erdhej çêbû. Zaroka min jê xilas bû. Niha rewşa wê ya tenduristiyê gellek baş e. Em dixwazin baştir bibe. Ez ji bo alîkariyê ji birêz Yusuf Polat û malbata wî re gellekî spas dikim."

Yusuf Polat derbarê hewldanên xwe û şêweya alîkariya xwe bo Şakir, Nazdar û bebeka wan a sê mehî Nêrgizê, nameyek vekirî nivîsand.



Wêne: Rûdaw

Nêrgiza biçûk ku di erdheja Wanê de ji mirinê filitîbû û ji ber mirinê ew biribûn Amedê, niha mezin dibe. Rewşa wê gellek baş e. Nergiz kîloyek û 500 gram hatibû dinyayê. Lê piştî tedawiya hate kirin, niha bûye 3 kîlo. Nêrgiz êdî hêdî hêdî çavên xwe vedike û dixwaze bikene.

Em nameya Polat bo xwendevanên Rûdawê li jêr diweşînin.

## Nameya Yusuf Polat

# "Armanca me ew e ku em malbata Nêrgizê bi war bikin"

Piştî ku min ew nûçeya di rojnameya Rûdawê de xwend, min ji xwe re got 'aha ew fersend e ku em li bendê bûn, jiber ku me nedixwest bi rêyên nenas alîkariya gelê me yê Wanê bikin, pereyan bişînin ser hesabê dezgehek xelkê, ku mirov nizane ka ew alîkarî dikeve destên kê. Li sêr vê yekê ez bi bermaliya xwe re axivîm û min got 'xwedê bike, em ê Nêrgîzê bi war bikin'. Em ê wê li Xelîkan, di navçeya Cihanbeylî de (Konya), li gundê min bi cîh û war bikin. Xerc û debara wan jî qet nebe heya şeş mehan bidin ser xwe heya ku ew bi xwe, li ser



lingên xwe disekinin, nanê xwe qezenc dikin. Dûre jî ji wan re li Almanya û Swîsreyê pereyekî berhev dikin, ji bo ku ew xaniyekî xwe, li gundê xwe, li Wanê ava bikin. Bo vê yekê min bi Rûdawê re tekilî danî, hejmara telefona malbata Nêrgizê wergirt û bi bavê Nêrgîz, kekê Şakir re ketim tekiliyê. Dûre jî ez bi birayê xwe û serokê şaredariya gundê xwe re axivîm, qala pêşniyaza me kir. Şaredar Mile û birayê min jî bi vê projeyê razî bûn, piştgiriya xwe nîşan dan, her çiqas ku çend malên din ji Wanê hatibûn gundê me û alîkariya wan jî dikin. Dema ku ew li aliyekî malekê ji Nêrgîzê re amade dikin, li hêla din jî min îro (16.01.2012) ji bavê Nêrgîzê re pere li ser navê wî, bi rêya bankê şand. Li ser sekinîm ku bankeya herî nêzî cîhê wî be. Piştî du seatan wî pereyên xwe wergirtin û ez jî rehet bûm, wek barekî giran li ser milê min ket xwarê. Nêrgîz roja Çarşemê, demjimêr 19 ji Amêdê berbi Konyayê ve bi rê dikeve. Pencşemê sibe, seat 8 ew digihijin Konyayê. Ji wir jî minîbûsek gundê min wan digire û dibe mala bavê min. Şevekê li wir dibin mêvan, roja înê jî derbasî xaniyê xwe dibin.

Ez bi xwe sîh sal in wergêr û hiqûqnas im, bermaliya min jî pizîşk e. Em 33 salan li Almanyayê jiyan, niha jî li Swîsreyê, li bajarê Zurichê dijîn. Armanca me ew e ku em malbata Nêrgîzê bi war bikin. Lê ne li cem Kurdên li 'xerîbîstanê', lê belê li gundê kek Şakir, li Wan a wek min xemgîn, li Wan a rengîn û dengîn, li ser axa bav û kalan ya ku ji min re bi deh salan qedexe ye.

Hîn ne bes, Nêrgîz di wê malê de sêvikên wek xwe dibîne. Navên wan Hesen, Yusuf û Helîn in ku çavên wan beriya 11 salan dinya dîtin. Niha her yek ji wan şêr û şepal e. Xwedê bike, em ê Nêrgîzê ji bikin pilingek!

***Yusuf Polat,*** *Zurich*


**Rûdaw**

Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

# Raporek Parlementoya Ewropayê piştgiriya Tirkiyeyê li dijî PKKê dixwaze

**Bruksel (Rûdaw) –** Parlementoya Ewropayê raporek amade kiriye ku tê de daxwaz ji welatên Yekîtiya Ewropayê (YE) dike hevkariya hikûmeta Tirkiyê li dijî PKKê bikin.

Li gor raporeke malpera Metro ya îngilîzî, Parlementoya Ewropayê daxwaz kiriye ku welatên Ewropayê bi cidî li daxwazeke Tirkiyeyê biramin ku daxwaz ji wan welatan kiriye endamên daxwazkirî yên PKKê dersînorî Tirkiyeyê bikin, lê heya niha welatên ewropî ev daxwaza Tirkiyeyê paşguh kirine. Derbarê kêşeya PKKê de, di wê raporê de hatiye xwestin ku "şermezarkirineke tund a kiryarên terorîstî yên PKKê ku navê wê rêxistinê di nav lîsteya rêxistinên terorîstî yên YE de heye û herwiha piştgiriya tekûz a Tirkiyeyê bê kirin li hember PKKê û em daxwaz ji welatên endamên YEyê dikin ku ji nêzîk ve hevkariya Tirkiyê di şerê dijî terorê de, bikin."

Ev rapor ji aliyê siyasetvana hollandî ya ser bi Partiya Demokrata Mesîhî (CDA), Ria Oomen-Ruijten, hatiye amadekirin û tê çaverêkirin vê heftiyê di civîna komîteya pêwendiyên derve ya Parlementoya Ewropayê de bê minaqeşekirin. Herwiha di wê raporê de daxwaz ji hikûmeta Tirkiyeyê hatiye kirin ku Pirsa Kurd bi awayekî aştiyane çareser bike.

Derbarê çareserkirina pirsa Kurd li Tirkiyeyê, rapor pêşniyar dike ku Tirkiye bi rêyeke aştiyane vê pirsê çareser bike, herwiha hatiye pêşniyaz kirin: "Divê Tirkiyê nîşan bide û biselimîne ku hewl dide bi rêyeke siyasî Pirsa Kurd çareser bike û em daxwazê jî ji hemû hêzên siyasî dikin ku diyaloga siyasî peyrew bikin bona pêkanîna armancên xwe."

Li gor raporê, reşnivîsa ku hatiye amadekirin 9 rûpel e û tê de rexne jî li dewleta Tirkiyeyê tê girtin derbarê rewşa azadiya ra û nerînê û qala girtina rojnamegeran jî dike.



**Ria Oomen-Ruijten**

**Ria Oomen-Ruijten ji sala 1989ê ve endama Parlementoya Ewropayê ye. Ew ji bo karûbarên Tirkiyeyê di PEyê de berpirsyar e, herwiha Ria Oomen-Ruijten endama Lijneya Derve û Lîjneya Mafê Mirovan e.**



## McCain tînî da mijara parçekirina Îraqê:

# Ji xeynî ku bibe sê parçe, ti rêya din li ber Îraqê tune

**Selam Sadî** Hewlêr

Pirraniya çavdêr û pisporên karûbarên Îraqê hemfikir in ku agahdariya senatorê amerîkî John McCain dikeve çarçoveya propogandaya hilbijartinan û kampanya li dijî Obama, lê belê McCain ew yek jî anî bîra hemûyan ku dewleta Îraqê, nemaze piştî vekişîna bilez a hêzên amerîkî, ber bi dewleteke têkçûyî diçe.

Heftiya borî endamê kongrêsa amerîkî û berbijarê gera borî ya Partiya Komarî bo serokayetiya Amerîkayê, John McCain, gengeşeyeke berfireh dirust kir, gava rexne li plana vekişîna hêzên Amerîkayê ji Îraqê kirin û hişyarî da ku cîhan di demeke nêzîk de hilweşandina Îraqê bi çavê xwe dibîne û di encama wê de jî sê dewletên nû dirust dibin.

McCain berpirsyariya xirabûna rewşa Îraqê xist stuyê îdareya serok Obama, "ji ber ku nehişt hêzeke amerîkî li Îraqê bimîne." Gotinên McCain hemdem bûn ligel daxuyaniyên berbijarê nû yê Komarîxwazan bo serokatiya Amerîkayê û waliyê wîlayeta Texas Rick Berry ku got eger ew bigihije serokatiya Amerîkayê, hêzên amerîkî vedigerîne Îraqê, "da ku li dijî hewldanên serdestiyê yên Îranê li Îraqê derkevin."

**Îraqî hemû yekdest dijî plana parçebûnê derdikevin. Bila êdî dijminên Îraqê destêwerdanê di karûbarên me yên navxwe de nekin.**

Dengvedaneke mezin a van gotinan li navxwe û derveyî Amerîkayê jî û nemaze li Îraqê hebû. Gotinên Rick Berry ku di rûbirûbûneke navbera berbijarên Komarîxwaz de hatin kirin, wek rojnameya Waşington Post nivîsîbû, "agir berdan Twitterê." 5.800 şîrove li ser gotinên Rick Berry hatin nivîsandin.

McCainê ku vekişîna tevahiya hêzên Amerîkayê ji Îraqê wekê karekî çewt dîbîne, lê piştgiriya gotinên berbijarê serokayetiyê Rick Berry jî nekir, ku soza dîsa şandina hêzan bo Îraqê dide û di vî warî de ji CNN re ragihad ku "Derfeta hiştina hêzan li Îraqê qediya."

### Propagandaya beriya hilbijartinan?

Di vê çarçoveyê de jî McCain rexneyên tund li hikûmeta Îraqê girtin û got "Asta şîddetê ber bi zêdebûnê diçe, di bingeh de hikûmeta Îraqê ne aktîf e û em dibînin ku çawa bandora Îranê ber bi zêdebûnê diçe, lewma rewş zêde metirsîdar e."

Lê ev daxuyanî ji gellek kesan re cihê şaşmayînê bûn, nemaze ku tê zanîn peymana ku çarenivîsa hêzên Amerîkayê li Îraqê diyar kir, di serdema serokatiya George Buş de hat minaqeşekirin, ku tê de roja 31ê Kanûna 2011ê wekê dema dawî ya mabûna hêzên Amerîkayê diyar kir. Hinek çavdêrên Rojavayî, nemaze yên amerîkî, di wê baweriyê de ne ku ev mijara McCain tevdan e, tenê propagandaya hilbijartinan e.

Mamosteyê zanistên siyasî li zanîngeha North Dakota ya amerîkî, Dr. Thomas Ambrosio, ji Rûdawê re got: "Di wê baweriyê de me rexneyên ku derbarê Îraqê de li îdareya Obama tên kirin, beşek in ji propagandaya hilbijartinan. Bawer dikim ku Îraq di siberojê de dibe sê parçe, ji ber ti rêyeke din nabînim li pêşber Îraqê: yan şerê mezhebî derdikeve, yan serokwezîr hewl dide Îraqê bike dewleteke navendî ku ev jî ji aliyê Kurd û Sunniyan nayê qebûlkirin."

Dr. Thomas Ambrosio wiha axaftina xwe domand: "Rick Berry di aliyê siyasî de mirî ye, ji ber ku di hilbijartinên wîlayeta New Hampşire de tenê ji sedî 7ê dengan anî. Lewma çi bêje jî, cidî wernagirim, ji ber ku eger wiha be, êdî çi tê serê peymana ewlekariya Bexdayê?"

### Bicihanîna peymanek nehênî?

Li gor rapirsînên ku di dema danûstandinên vekişîna hêzan de di nav xelkê amerîkî de hatibû kirin, ji sedî 78ê beşdaran ligel wê yekê bûn ku hêzên wan bi tevahî ji Îraqê vekişin, 21 ji sedî jî ligel wêya bûn ku hinek hêzên wan bimînin.

Ebdilhadî Hessanî ku yek e ji lîderên Hevgirtina Dewleta Yasa ku Nûrî Malikî serokatiya wê dike, di vê bareyê de got "Îraqî hemû yekdest dijî plana parçebûnê derdikevin. Bila êdî dijminên Îraqê destêwerdanê di karûbarên me yên navxwe de nekin. Ev daxuyaniyên McCain û yên din tenê propagandayên berî hilbijartinan e."

Parlementerê ser bi Hevgirtina Îraqiye Hamid Mutleg jî got ku tevgerên hikûmeta niha ya Îraqê xeter in: "Vîn û arezûya aliyê desthilatdar ê di nav hikûmetê de bo komkirina desthilatê di destê xwe de û dûrkirina aliyên din û rêznegirtina ji peymanên berê wisa nîşan didin ku planeke nehênî heye ku Îraqê ber bi parçebûnê dibe." Navborî wîlayetên Sunnî weke mînak anîn, ku di dema nivîsîna destûrê de bi tundî li dijî projeya federaliyê derketin, lê belê vêga hatine neçarkirin ku daxwaza herêmên federal bikin. Bi baweriya Hamid Mutleg, egereke bihêz heye ku ew siyaset beşek be ji peymana nehênî ya Malikî ligel Rêveberiya Amerîka û ji Rûdawê re got: "Reftar û siyaseta ku em îro dibînin tenê vê nîşanê dide."

## Şirove



### Di hêlekana navbera Ergenekonê û AKPê de bêşansiya Kurdan

**Bayram Ayaz**

Tevgera welatparêza Bakurê Kurdistanê bi taybetî vî kêliyê beramberê êrîşên dijwar e. Gellekî leyîstik tên gerandin. Armanca êrîşên Dewleta Tirk û desthilata siyasî ya niha, lawazkirina bizava welatparêz e. Heta mirov dikare bêje, armanca van operasyonan yasereke şikestina taqeta fizîkî ya xelkê welatparêz e. Ji aliyê psîkolojîk ve jî pêleyistina bi xîreta Kurdan e. Dewleta Tirk û hikûmet dixwaze pêşî li politizebûna Kurdan bigre, nehêle xelkê kurd ji bo mafên xwe rewa berxwedaneke sivîl û aştiyane rêvebibe û tevgereke wisa peyda bibe. Daku di vê pêvejoyê de mafên xwe yên bingehîn bi dest bixe, bi kêmasî li bakur hebûn û nasnameya gelê kurd were pejirandin û bikare xwe bi xwe rêve bibe.

Wekî mirov dişopîne, dewlet vê pilana xwe bi du alî dimeşîne. Yek, lê kar dikin ku tevgerê terorîze bikin. Ji aliyê din ve kadroyên sivîl yên ku di nav xelkê de ne, çalak in, wan kesan bi operasyonên polîsan digrin davêjin zindanan. Ev pilan û bername aşkere ye. Kesekî ku hinekî ji siyasetê têbigîhe û siyaseta Dewleta Tirk binase, dikare gellekî bi hêsanî van hewldanên têkdana tevgera welatparêza kurd bibîne. Dewlet vê operasyonê di bin navê "operasyonaKCKê" de dimeşîne. Dibêje, PKK/KCKê di nav sînorên Tirkiyê de, ji bo xwe "dewletekî" damezirandiye, em vê qebûl nakin. Dewleta Tirk vê dike hincet û bi hezaran rêvebir, kadro û aligirên PKK/KCK/KCD/BDPê digire davêje heps û zindanan.

Dewletek û hikûmetek eger niyeta xwe rastî jî aştî û çareseriyeke maqûl be, bi hezaran kesên sivîl nagire û nevêje hepsan. Eger Dewleta Tirk û hikûmet bixwaze, dikariya vê pirsê bi gotûbêjê çareser bike û belkî ji aliyê PKKê ve qet pêdivî bi rêxistineke wek KCKê jî nedima. Lê niyet û armanca Dewleta Tirk ne ev e. Eger wan bixwesta mafê Kurdan bêguman bi nasnameya kurdî bidin, dikaribû di demê van deh salên desthilata xwe de Kurdên hevalbendên xwe li hêrêma bakurê Kurdistanê bikira xwedî desthilatê. Eger ew bi PKK/KCK/KCD/BDPê ne razî ne, bila nasnameya kurdî û perwerdeya bi zimanê zimakî qebûl bikira û mafê xwe birêvebiriyê cîbecîh bikira, hevalên xwe bianîna ser hukim. Niyeta wan ne ew e ku hebûna xelkê kurd qebûl bikin. Tevgera kurd û yek bi yek her Kurdê xwedî xîret ku bi kêmasî xwedî li nasnameya xwe ya kurdewar derdikeve, divê vê rastiyê bibîne û wisa tev bigere.

Ev operasyon roja 15ê Nîsana 2009ê destpê kir. Yanî du hefte piştî hilbijartinên herêmî yên roja 29ê Adara 2009ê. Em bînin bîra xwe dewletê û AKPê dixwestin şarederiyên di destê Kurdan de, wê demê şaredariyên di destê DTPê de, bixin destê xwe. Ev nebû dest bi girtina Kurdan kirin. Sala par buharê jî dest bi diyalogê kirin, lê ev jî heta piştî hilbijartinê bû. Piştî hilbijartinê careka din dest bi girtinan kirin.

Dorberên AKPê dibêjin, Ergenekonî PKKê pîj dikin û şer derdixin. Qaşo van operasyonên dawî ji bo vê yekê dikin. Lê ev jî hincet e.

Du bûyer durûtiya wan aşkere dike. Yek jê mijara destûra nû ye. Ya din jî komkujiya Roboskî ye. AKP li pişt deriyan dibêjê Ergenekon. Baş e! De kerem bikin rastiya bûyera Roboskî ji xelkê re bêjin, lêborîna xwe bixwazin û ji xelkê re deklere bikin ku hûn ê destûreke pirr zimanî, pirr kulturî û pirr etnîkî amade bikin û jiyaneke ser esasê wekheviyê garantî dikin.

Hûn van tiştan nakin, û bi fêlbazî dixwazin tevgera azadîxwaza bakurê Kurdistanê di hêlekana nabera beşê dewleta kûr Ergenekoniyan/kemalistan/tirkçiyên tûranî û desthilata AKP/fethullahcî û cemaetên din de bifetisînin. Armanc ev e. Tevgera kurd hewce ye şiyar be û ji bo xwe siyasetê bike û nebe qurbaniyê vê nakokiya li Tirkiyeyê.

# Roboskî biryara çûna Mexmûrê bi şert rawestand

## Gundiyên Roboskî ji hikûmetê daxwaz dikin ku eger hebin rûyên veşartî yên bûyerê, divê hemû bên eşkerekirin



Wêne: DIHA

**Hêmin Xoşnaw**

Heftiya borî rûniştevanên gundê Roboskî ya ser bi Qilaban ragihandin ku daxwaz dikin herin kampa Mexmûrê, lê muxtarê gundê Roboskî Haşim Encu ji Rûdawê re daxuyand ku vêga ew biryar ragirtine.

Komkujiya gundê Roboskî li navçeya Qilaban li Şirnexê roja 28ê Kanûna borî, ku di encama êrîşa firokeyên şer ên Tirkiyeyê de 34 karwaniyên kurd bûne qurbanî, bertekên zêde bi xwe re anîn. Di roja duyem a şîniyê de gava qaymeqamê Qilaban Naif Yavûz xwest tevî şîniyê bibe, ji aliyê çend ciwanan rastî êrîşê hat û birîndar bû. Dû re 13 ciwan bi tometa êrîşa li ser Yavuz hatin girtin.

Muxtarê Roboskî Haşim Encu got: "Êrîşa ser qaymeqam reaksiyoneke ne zîrek bû, lê divê bê zanîn wan ciwanan merivên xwe ji dest dane û ji ber vê bextreşiya kezebşewat ev kar kirin."

Piştî girtina wan ciwanan gotegot hatin belavkirin ku rûniştevanên gundên Roboskî û Bêje xwe amade dikin herin kampa penaberên kurdên bakur li bajarokê Mexmûr, muxtarê Roboskîdiyar kir ev raman gotûbêj kiribûn: "Ligel girtina wan ciwanan gund bû zindaneke vekirî, lewma ez çûm ba dadwerê Qilaban û min jê re got: yan tu yê van ciwanan azad bikî, yan em ê ji warê bav û bapîrên xwe derkevin û hûn gêrê tê de bikin, wan ji peyama min fêm kir, 8 ciwan azad kirin, tê çavêkirin yên din jî azad bikin."

Navbirî wiha axivî: "Em ji koçkirinê poşman nebûne, ger dewlet bûyera 28ê meha borî dubare bike, yan ciwanan bigire, ji xeynî çûna li cem merivên xwe li Mexmûrê ti rêya din li ber me tune. Lewma me biryara çûyîna Mexmûrê bi şert rawestandiye."

> **Muxtarê Roboskî Haşim Encu:**
> **Eger dewlet bûyerê dubare bike û ciwanên me bigire, ji xeynî çûyîna Mexmûrê ti rê li ber me tune.**



Haşim Encu

Hikûmeta AKPê biryar daye, kesûkarên qurbaniyên Qilaban tawîz bike bêyî ku daxwaza lêborînê ji wan bike, lê xelkên Roboskî helwêst wergirtine û dibêjin heya ku tawanbar neyên dadgehkirin qurûşekî jî wernagirin. Haşim Encu got: "Na, hewldaneke bi vî rengî nehatiye kirin. Lê em daxwaz dikin eger hebin rûyên veşartî yên vê bûyerê bên kifş kirin."

Piştî derbasbûna zêdeyî du heftiyan li ser bûyera Roboskî, hikûmet ji xeynî dûrxistina efserekî artêşê tiştekî din nekiriye, vêya jî xelkê navçeyê zêdetir dilgiran kiriye. Encama lêkolînê hê jî nehatiye kifşkirin.

### Ensarioglu û Tuncel: Kiryar ne Ergenekon e

Haşim Enco dibêje: "Ev bûyer piştî gotinên Bulent Arînç li parlamentoya Tirkiyeyê gava ragihand ku ew di makezagona nû de li mafên Kurdan mikur tên û vebûna duyemîn dest pê dikin, hate holê. Lewma diyar dibe ku Ergenekon ev kar kiribe, lê nizanim hikûmet çima lê mikur nayê."

Lê parlamenterê kurd yê AKPê Galip Ensarioglu gotinên Encu sade dibîne û dibêje: "Di dema borî de her dema Tirkiye xwestibe ber bi demokratîbûnê gavan bide, bûyerên bi vî rengî derketine holê, lê bawer nakim îro Ergenekon ewqasî bihêz be."

Herwiha parlamentera BDPê Sebahat Tuncel bawer nake Ergenekon ev kar kiribe û dibêje, ev bangeşeya AKPê ye: "AKP di guhê xelkê de dike pistepist ku Ergenekon ev kar kiriye. Hewl didin bi vî awayî rastiyan winda bikin. Berpirsê vî karî hikûmet e. Ergenekon li zindanê ye, ger hinek ji wan li derve bin jî, bi kumên xwe girtine qena ba wan nebe. Çawa wê bigihîjin Roboskî?"



Xebat Dêrikî





Hersê birayên ji malbata Bedro ku hatin kuştin: Ehmed, Nîdal û Amar

### Piştî kuştina sê kesên ji malbata Bedro :

# Rexnegirên bûyerê tên tehdîd kirin

**Hîm Mele Ehmed** Köln

Bûyera kuştina sê birayan ji malbata Bedro li Qamişloyê ji aliyê rêxistinek ku nêzîkî PYDê tê dîtin, her ku diçe bêtir ji çarçoveya bûyerek "hesabpirsîna ji kesên ku dest danîne ser milkên gel û bazirganiyê bi xwîna milet dikin“ derdikeve. Piştî ku rêxistina bi navê “Koma Parastina Nirxên Gel“ 10ê vê mehê hersê birayên bi navê Amar, Nîdal û Ehmed kuştin, gellek sazî, rêxistin û kesayetiyên kurd evyek weke bûyerek ne qebûlbar şermezar kirin. Van rojan jî 100 kesayetiyên Kurdên Rojavayê Kurdistanê di daxuyaniyeke hevpar de kuştina wan 3 birayan şermezar kir, lê gellekên wan kesayetiyan ji aliyê rêxistinek heta niha nenaskirî bi rêya e-mailê hatin tehdîdkirin.

Pevçûnek tenê bi qerebalix bû, yan êrîşeke çekdarî? Fîşeka yekê ji kîjan alî ve hate teqandin? Ev hin pirsin ku heta niha nehatine zelalkirin derbarê rûdana kuştina 4 kesan li Qamişloyê, ku 3 ji wan kurên Ebdulla Bedroyê kevne PKKyî bûn û kesê çaran jî Xebat Dêrikê kadroyê PKKê bû. Xebat Dêrik (navê wî yê rastî Mahmud Muhemmed e) endam û şervanekî PKKê bû û herwiha endamê “Koordinasyona Tevgera Civaka Demokratîk a Rojavayê Kurdistan (TEV-DEM)“ bû ku rêxistinek nêzîkî PYD/PKKê ye.

Bûyera mala Bedro di 10ê vê mehê de li Qamişloyê rûda. Li gor agahiyên ku herdu aliyên pevçûnê dipejirînin, hin alîgirên PKKê komîteyek amadekiribûn ji bo çareserkirina pirsgirêka “milkên partiyê“ yên ku di destê Ebdulla Bedro de mane. Li gor agahiyên ji derdorê PKKê, Ebdulla Bedro di salên 90an de endamekî çalak bû di nav PKKê de, kurekî wî li çiyê şehîd ketiye û keçeke wî jî wê demê gerîlla bû. Lê Ebdullah Bedro di salên 90an de dev ji PKKê berdaye û ji wê demê ve xaniyek û hin milk di destê Ebdullah Bedro de ne ku PKK yên xwe dibîne. Li gor agahiyên ku Rûdawê karî ji derdorên PKKê bi dest bixe, Xebat Dêrik ligel çend hevalên xwe roja 8ê vê mehê diçe mala Bedro ji bo ku daxwaza milkan bikin, lê ew hevdîtin vediguherê pevçûnê û di encamê de kurekî Ebdulla Bedro fîşekan li ser wan diteqîne û Xebat Dêrik bi giranî birîndar dike, lê fîşekekê bi şaşîtî li bavê xwe jî dixe. Piştî teqandinê, hevalên Xebat Dêrik ji cihê bûyerê direvin. Herdu brîndar paşê ji aliyê kesên ji malbata Bedro bo nexweşxanê tên rakirin. Piştî bûyerê malbata Bedro di belavokekê de ragehand ku Xebat Dêrikî û hevalên xwe ji bo kuştinê hatibûn. Çavkaniya Rûdawê ya ji aliyê PKK dibêje ku “Ev çîrok ne mimkune, ji ber eger hevalên me ji bo kuştinê çûban, wê rojê wê mala Bedro bi tevayî hatiba kuştin. Lê gava hevalên me reviyan û Xebat di nav xwînê de ma, ev dide xuyakirin ku hevalên me ne çekdar bûn.“ Roja şemiya borî, 14ê vê mehê, Xebat Dêrik li nexweşxaneyeke Helebê jiyana xwe ji dest da.

## Rêxistineke siyasî tolhildanê dike çareserî?

Du rojan piştî birîndarkirina Xebat Dêrik, di 10ê vê mehê de, kesên heta niha nenas berê xwe didin nexweşxaneya ku Ebdulla Bedro lê dimîne û destpêkê kurekî wî dikujin, paşê li cihekî din yê nexweşxaneyê du kurên din yên Ebdulla Bedro jî dikujin. Ev rûdana tolhildanê bû sedama şermezarkirineke berfireh ji aliyê gellek rêxistin û kesayetiyên Kurdên Rojava ku dipirsin çawa rêxistinek siyasî ya kurdî tolhildanê bike çareserî û ji bo çi sê bira bi hev re bên kuştin.

Rojekê piştî kuştina sê kurên mala Bedro, rêxistineke heta niha nenaskirî, bi navê “Koma Parastina Nirxên Gel“, ragehandinek derxist û kuştina hersê kesan girt ser xwe. Vê rêxistina ku tê gotin baskekî PYDê ye, da xuyakirin ku ewê berdewam be di şopandina bûyerê de, heta “xudanên milkan mafên xwe bistînin“. Tehdît li ser kaxezan nema û roja Dûşemê (16ê vê mehê) hêzek çekdar êrîş bir ser çend dikanên mala Bedro jî û ew şewitandin. Daxuyaniya “Koma Parastina Nirxên Gel“ ji aliyê malperên nêzîkî PYD/PKK ve hate belav kirin, destpêkê di Ajansa Nûçeyan a Firatê (ANF) de. Piştî derketina ragehandina “Koma Parastina Nirxên Gel“, nivîsên din jî belav bûn ku “bûyer wê berdewam bibe û mala Bedro dibe ku hin qurbaniyên din jî bide.“

## Nameya tehdîtê ji kesên serbixwe re hate rêkirin

Hejmarek rêxistinên siyasî û kesayetiyên Kurdistana Rojava bûyer bi tundî şermezar kirin. Rêxistina Ewropa ya Encûmena Niştîmaniya Kurdî li Sûriyê (ENK) di 14ê mehê de di daxuyaniyekê de “Bûyera kuştina siyasî ya nenaskirî di civaka Kurdî li Sûriyê“ şermezar kir. ENKê herwiha bêyî ku binav bike, daxwaz ji “wî aliyê siyasî yê ku piştgiriya 'Koma Parastina Nirxên Gel' dike“ kir ji bo ku wê kiryarê şermezar bike û daxwaza cezakirina kûjeran kir. Di 16ê vê mehê de jî 100 çalakvan û rewşenbîrên Kurdên Rojavayê Kurdistanê ragehandinek derxistin ku bûyera kuştina zarokên mala Bedro şermezar dike. Tenê rojekê piştî belavbûna vê ragihandinê, rêxistineke nû bi navê “Şervanên Şehîd Xebat - (ŞŞX)” bi rêya e-mailê nameyek tehdîdê ji hejmarek ji wan kesan re şand, yên ku di nav wê ragihandina 100 kesî de bûyer şermezar kiribûn. ŞŞX di nameya xwe de dide xuyakirin ku her kesekî ku bûyera tolhildanê şermezar bike, yan her kesekî ku bixwaze zarokên mala Bedro li cem xwe veşêre, ew kes jî wê mîna şirîkên kûjerê bên dîtin û nameya xwe mina tehdîda dawî binav dikin. Di heman demê de name dibêje ku karên cezakirina malbata Bedro hîn bi dawî nebûne û wê berdewam bibin heta hemû endamên malbatê xwe radestî “Dadmendiya Gel” bikin.

Tevlî ku Berdevkê Tevgera Civaka Demokratîk (TEV-DEM), Dr. Hûsên Koçer, ji Rûdawê re got ku wan bi kuştina wan sê birayan û birîndarkirina bavê wan heyfa Xebat Dêrik hilaniye û bûyer girt ser rêxistina xwe, lê heta niha berpirsekî PYD/PKKê buyer şermezar nekiriye. Malbata Bedro jî di 14ê vê mehê de ragehandinek derxist û daxwaza navçîtiya hêzên Kurdistanî dike, “ji bo bidawîkirina fitneya ku beramberî malbat me pêk hat”.

# Sîxurên Sûriyê bi çavdêrên Yekîtiya Ereban dileyîzin

**Hêmin Xoşnaw** Hewlêr

Roja 11ê vê mehê, piştî 14 rojan ji hatina wan bo Sûriyê, grûpeke çavdêrên Yekîtiya Ereban serdana çend navçeyên Cezîrê li Rojavayê Kurdistanê kirin. Lê bi tenê li bajarê Amûde çûne nav xwenîşanderên kurd. Çend siyasetmedarên kurd tekez dikin ku sîxuriya sûrî wan çavdêran ber bi cihên ku alîgirên rêjîmê li wan hene dişîne.

Roja 27ê meha borî, piştî biryara Yekîtiya Ereban ji bo kifşkirina rastiya bûyerên li Sûriyê, grûpek çavdêrên ereb berê xwe dan Sûriyê. Roja 6ê vê mehê gotegot hatin belavkirin ku ev çavdêr wê serdana Qamişloyê jî bikin, lewma Kurdan xwe ji bo xwenîşandanan amade kirin, lê bêyî ku ti daxuyaniyan bidin, çavdêr nehatin Qamişloyê. Çarşema borî bo cara yekemîn hinek ji van çavdêran berê xwe dan navçeya Cezîrê li Rojavayê Kurdistanê. Çavkaniyên nûçeyan li Cezîreya Rojavayê Kurdistanê amaje didin ku sîxurên sûrî heya radeyeke baş karê wan çavdêran kontrol kirine û berê wan didin cihên ku alîgirên Esed li wan kom dibin.

Cîgirê sekreterê Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê, Hesen Salih, tekez dike ku çend roj in ew çavdêr li wan navçeyan dizivirin, lê sîxurên dewletê ligel wan in û rê nadin wan herine cihê kombûna xwenîşanderên kurd. Hesen Salih di vî alî de bo Rûdawê got: “Gellek kesan roja înê li pêşber mizgefta Qasimo xwenîşandanek kirin û daxwaz ji çavdêran kirin ku bêne nava xwenîşanderan, lê nehatin. Roja pêncşemê xwenîşandaneke berfireh bona pêşwazîkirina çavdêran li Qamişloyê hat sazkirin, lê sîxurên sûrî berê çavdêran dan taxa Fillehan ku aram e û xwenîşandan lê nayên kirin.“

Sekreterê Partiya Çep a Kurdî li Sûriyê, Mihemed Mûsa, van gotinan piştrast dike û tekez jî dike ku ciwanên kurd gava bizanin çavdêr têne bajarekî, bi hejmareke herî mezin li ser kolanan kom dibin: “Li Qamişlo komîteyeke hevbeş a nûnerên kurd, ereb û mesîhî bo pêşwazîkirina çavdêrên ereb hat avakirin, lê mixabin sîxurên sûrî nehiştin çavdêran bibînin. Herwiha gava çavdêrên Yekîtiya Ereban çûne Tirbespiyê li rojhilatê bajarê Qamişlo, tenê ligel zilamên rêjîmê kom bûn.“ Endamê polîtburoya Partiya Azadî ya Kurdî li Sûriyê Mistefa Osê jî piştrast dike ku çavdêrên ereb li gellek navçeyên Cezîrê geriyan, “lê belê diyar e azadiya wan sînordar e û nekarîne raya xelkê werbigirin.“ Mistefa Osê wiha berdewam dike: “Roja înê xwenîşander li pêşberî mizgefta Qasimo ku navenda xwenîşandanên Qamişloye ye û dikeve ser rêya Amudê, kom bûn. Telefona çavdêran kirin ku bêne nav wan, lê çavdêran got eger kuştin neqewime, ew nikarin bêne nav xwenîşandanan.“

## Raporek radestî çêvdêrekî kirin

Lê tevlî hemû dorpêça ku li ser çavdêrên ereb hatiye ferzkirin, bajarê Amûdê weke çawa çend carên din kariye bibe mînaka berxwedana neteweyî ya Kurdan, vê carê jî karî dorpêça ser wan çavdêran biherifîne û wan neçar bike ku ji otomobîlan bêne xwarê û ligel wan biaxivin. Mihemed Mûsa got: “Tenê cemawerê Amûdê di xwenîşandaneke 10 hezar kesî de karîbûn çavdêrên ereb bibînin û 3 ciwanên Amûdê raporek derbarê rastiya bûyeran radestî wan bikin û ala Kurdistanê jî li milê çavdêrekî bialînin.“

Mistefa Osê jî got: “Berî ku çavdêr bigihijin Qamişloyê, hejmareke zêde ya xelkê daketin ser kolanan. Gava otomobîla çavdêran nêzîkî xwenîşanderan bû, bi telefonê ligel wan axivîn. Çavdêrekî li ser otomobîlê axftinek kir û got 'Ez ji Îmarata Erebî me, ji mêj e min dixwest bême Qamişloyê, vaye hatim.' Di wê demê de çend ciwanan ew çavdêr danîn ser milên xwe û bi aleke mezin a Kurdistanê pêçan û raporek derbarê rewşa bajêr radestî wî kirin.“

Zekî Ozmen


Wêne: Rûdaw

# Xesû û bûk li ser naveroka dîmenan şer dikin

Pîşesaziya karê dîmenkişandin û vîdeoyê di nava Kurdan de li Ewropayê û bi taybetî jî li Almanyayê zêde belav bûye. Bi dehan şîrketên kurdan ên kameravanî yên profesyonel û yên bi awayekî hewesdar vî karî dikin hene. Gellek caran kapasîteya şîrketên kurdan ên dîmenkişandina dawet û rojên taybet ên Kurdên li Ewropayê têrê daxwazê jî nakin. Ji bo ev şîrket ji bo daxwazan bibin bersiv, ew dikevin nava hewldana kirêkirina alavan nû. Ev pîşesazî jî mîna pîşesaziyên din xwedî taybetî û pirsgirêkên cûda ye.

Reşad Hoserî ku ji Bakurê Kurdistanê ye û xwediyê şîrketa dîmenkişandinê ya bi navê Reşatvideo ye, ev bi salan e vî karî bi awayekî profesyonel dike. Me dîdara xwe ya li ser vê babetê di stûdyoya wî ya biçûk ku li hawîrdor kamera, CD, wêneyên dawetan ên hatine çarçovekirin û dîsa yên di albûmên taybet de hatine bicihkirin birêve bir.

Reşad Hoserî hê di destpêka sohbeta me de dibêjê ku tişta ew ber bi vî pîşeyî de kişandiye meraq e û wî perwerdehiya akademîk a derbarê vî pîşeyî de nedîtiye û wisa berdewam dike: "We rast bive, meseleya xweavêtina di nava vî karî de girêdayî wênekişandina min a li welêt bû. Dema ez li welêt bûm, gellek gundiyên me li Almanyayê dijiyan û wî wextî wênekêşeke min hebû. Min wêneyên gundiyan digirtin û gundiyan jî ew wêne ji xizmên xwe yên li Almanyayê dijiyan re rêdikirin. Ez bawer dikim ku niha pirraniya wêneyên kevin yên ji gundê min hatine Almanyayê, ew wêneyên ku min kişandibûn."

## Dîmenên vîdeo: Pira di navbera welat û diyaspora de

Reşad Hoserî piştî di destpêka salên 90an de wekî penaber tê Almanyayê, di pîşesaziyên cuda de kar dike. Li gor agahiyên ew dide me, piştre serpêhatiyeke wî dibe sedem ku ew niyeta xwe berbi karê kameravantiyê xera bike: "Bavê min ji welêt hatibû Almanyayê serdana me. Wî wextî dema mêvan dihatin, em bi wan re diçûn gerê, min dîmen tavêtin kameraya xwe ya yekemîn a biçûk û bavê min wê ew dîmen bi xwe re dibirie welêt, ji bo xizmên me jî lê temaşe bikin. Rojekî ez bi bavê xwe re çûm mala mirovekî xwe û ji ber min kamera bi xwe re nebiribû mala wan, ew mirovê me ji min xeyîdî. Ew li gor xwe li ser vê helwesta xwe mafdar jî bû. Ji ber wî wextî pirraniya Kurdan nikarîbûn herin welêt û pira têkiliyan a di navbera Kurdên li Almanyayê û yên li welêt dîmenên vîdeoyî bûn. Gellek kes wê di dîmenên me avêtibûn kamerayê de xuya bikirane lê belê ew mirovê me wê ne tê de ba. Vê helwestê wî wextî nîşanî min da ka Kurd çiqas qîmetê didin kamerayê."

Ew piştî vê serpêhatiya xwe dikeve nava hewlên fêrbûna karê kamerevantiyê de. Lê belê Reşad Hoserî heta wê demê ne ji pergala vî karî fêm dike ne jî ji komputerê. Ew dibêje ku jixwe di nava pîşesaziya kurdan a li Almanyayê de ew kesekî ku bi awayekî akademîk li ser vî karî xwendiye nas nake û wiha pê de diçe: "Hema bêje her kesî wekî min bi hewesdarî dest bi vî karî kiriye. Ji bo fêrbûna kar min gellek hewldan dana xwe. Ez şeş mehan çûm waneyeke taybet ya Dibistana Bilind a Gel (Volkshochschule) û her wiha min xwe li cem dibistaneke vî karî ya li ser înternetê ya bi pere jî tomar kir. Jixwe carnan ji bo kesek tişteke biçûk a komputerê nîşanî min bide, ez dused kîlometreyan diçûm. Gellek caran heta sibeyê min li ber komputerê wextê xwe derbas dikir." Reşad Hoserî bi vî awayî fêrî kar dibe û niha ne tenê diçe dawet û şahiyên kurdan yên li Almanyayê, her wiha car caran ew ji aliyê Kurdên li welatên din yên Ewropayê ve jî ji bo tomarkirina dîmenan tê vexwendin. Wî di demên derbasbûyî de dîmên ji bo klîp û bernameyên televizyonan jî kişandine.

## Mişteriyan ji hev re rêdikin

Li ser pirsa ka ew çawa reklama şîrketa xwe dike, dibêjê ku ya herî giring propagandaya devkî ye û ji aliyê din ve malpêrên wekî Youtube û pêşniyarkirina wî ya ji aliyê stranbêjên dawetan ve jî roleke giring dilîzin. Xwediyê Reşatvideo, Reşad Hoserî di vê navbera axaftina me de dîmenekî daweteke ku wî kişandiye û li ser Youtube weşandiye nîşanî me dide û dibêjê "Ji bo giringiya vê pîşesaziyê were fêmkirin, ka li vî dîmenî binêrin! Heta niha zêdeyî milyonek car ev dîmenên min tomarkirine hatine tikandin..." Piştî em bi çavên xwe vê hejmara bilind dibînin, em jî êdî vê kelecaniya wî fêm dikin.



> **Min dîmenên şahiyên alman û yên ji neteweyên din jî kişandine. Kesek wekî Kurdan evqas giringiyê nadê dîmenên vîdeoyî.**


Reşad Hoserî

Derbarê hejmara şîrketên din ên Kurdan ên vî karî dikin jî ew vê agahdariyê dide me: "Şîrketên kurdan ên profesyonel vî karî dikin û nanê xwe tenê ji vî karî dixwin li Almanyayê derdora dehan e. Lê belê hejmareke mezin a kesên din ên tenê wekî hobî dawiya hefteyan vî karî jî dikin hene."

Li ser razemeniya di teknîka kar de jî, Reşad dibeje ku "kesên profesyonel bi teknîka demê re dimeşin. Hinek şîrketên vî karî yên kurdan hene ku derdora sed hazar Euro di vî karî de razandine û nanekî baş jî jê dixwin. Min dîmenên şahiyên alman û yên ji neteweyên din jî kişandine. Kesek wekî Kurdan evqas giringiyê nadê dîmenên vîdeoyî. Ez vê jî bêjim; carcaran kapasîteya şîrketên heyî têra daxwazan nake û em alavan kirê dikin û xwe dikin du-sê beş. Dîsa gellek caran şîrketên ku têkiliyên wan bi hev re xweş, mişteriyan ji hev re rêdikin".

## Dawet zîndî li ser înternetê

Dema em derbarê elaqeya evqas mezin a ji bo vê pîşesaziyê de matmayî dimînin, Reşad Hoserî vê peytandinê dike: "Kurdên li Ewropayê ji hev dûr in û bi taybetî jî dixwazin rojên xwe yên taybet bi xizmên xwe yên li welêt re parvebikin. Ev yek jî tenê dikare bi rêya dîmenan were pêkanîn. Daxwaz ewqas mezin in ku em carcaran jî dîmenan bi awayekî zindî li ser înternetê diweşînin. Bi vê yekê xizmên malbatan li welêt dibin şahidê zindî yên dawetên kesên ji endamên din ên malbata xwe."

Di warê daxwazên malbatan ên ji kameravan û pirsgirêkên rû jî didin, ew dibêjê ku daxwaz li gora nifşan tê guhertin û heta ew gellek caran dibin şahidên şerê malbatan ên di vî warî de: "Hûn dizanin, ciwan û kesên bi temen ji hev cuda difikirin. Yên ciwan dixwazin em efektên baş û hemdem li gora teknîka îro bi kar bînin lê yên pîr dibêjin bila dîmenên gundan, pez û xwezayê yên welêt di nava videoya dawetan de hebin, ev dibe sedemê pirsgirêkan. Ji xwe ji bo dîmenên bi kalîte mesrefek mezin pêwist e û gellek caran xezûr û xesû li ber vê mesrefê nayên û ev dibe destpêka şerekî nû di nava malbatê de."

## Guman tê kirin ku wî xwe kuştibe

# Elî li Osloyê ji pirekê kete xwar


Wêne: Rûdaw

Elî Hisên ligel hevjîna xwe ya berê

**Hêmin Mehmûd** Derbendîxan

Li paytexta Norwêc Osloyê roja 8ê Çileya 2012ê xortekî kurd ji ser pireke wî bajarî kete xwarê û jiyana xwe ji dest da. Tevlî ku heta niha ti zanyarî derbarê sedemên vê bûyerê nehatine dayîn, lê çend hevalên xortê mirî li Norwêcê gumana wê yekê dikin ku wî xwe kuştibe.

Elî Hisên (34) xortekî xelkê bajarê Derbendîxan li Başûrê Kurdistanê ye û ev 14 salan li derveyî Kurdistanê dijiya, heta roja mirina wî li Norwêcê. Kesûkarên Elî Hisên li Derbendîxan bo Rûdawê axivîn û gotin ku ew heta niha bi dirustî nizanin sedemên mirina lawê wan çi ye.

### Pirsgirêkên wî ligel hevjîna wî hebûn

Çend hevalên Elî yên li Norwêcê bo Rûdawê gotin ku "Ev çend meh in pirsgirêkên Elî ligel hevjîna wî hebûn, ku ji wî ducanî ye û doza cudabûna ji Elî kiribû. Polîsên Osloyê jî hevdîtinên navbera wan de qedexe kiribûn. Dema hevjîna xwe xwest, wê jî zaroka nebûyî ji ber bir. Elî ev nêzîkî pênc mehan keçeke rûniştvana Silêmaniyê ji xwe re anîbû û biribû Norwêcê, lê ew jin li wir çûye mala xwişkeke xwe û doza berdanê ji Elî kir.

Hevalên Elî yên li Norwêcê wiha behsa wî dikin: "Ew xortekî karker bû, pirsgirêkên wî tune bûn, di nava hevalên xwe de hezkirî bû, cihê dilxweşiya me bû." Dost û xizmên Elî yên li Norwêcê çûne cem polîsan bo wergirtina zanyariyên bêtir, lê bersîva polîsan her ev bû ku "niha tiştê eşkere eve ku ew di avê de xeniqiye û ti şopên din nehatine dîtin."

# Komeleyên kurdan li Munchenê hevkariyê dikin

» 9 komeleyên Kurdan di civînekê de hatin cem hev û bo pêşerojê plana hevkariyê kirin


Kurdên li Munchenê dixwazin xebata xwe ya çandî û civakî bi hevre peşde bibin (Govenda Komciwan)

**Munchên (Rûdaw) –** Bi mebesta bidestxistina mafên demokratîk û civakî û başkirina rewşa kurdên li Munchenê 9 komeleyên kurdan hewl didin xebatek hevbeş bikin. Heman komele piştgirtiya tekoşîna gelê Kurdistanê jî xistin rojeva xwe.

Roja duşêma borî 9 komeleyên kurdan (Komela Koçberên Kurd/OKM, Komela Çandî ya Mezopotamya/KÇM, KOMKAR-Munchen, Komela Çandî ya Kurd/KÇK, Dibistana Kurdî/ ROJÎN, Civata Kurd, Mizgefta Ahmedê Xanî, FC-Azadî û FC-Newroz) yên li bajarê Munchenê bo karên hevbeş civînek lidarxistin.

Civîn li ser daxwaziya Civata Kurd û Komela Koçberên Kurd/OKM, roja duşêma borî êvarê li Landwehrstr.43 hat lidarxistin û heta saet 23ê şevê berdewamkir. Rojeva civînê "Di pêşerojê de hevkarî û koordînasyona komeleyên kurd li Munchenê" bû.

Nûnerên komeleyan di civînê de li ser berjewendiyên hevbeş, potansiyela rewşa civakî û siyasî ya Kurdên li Munchenê rawestiyan û bo hevkariya komeleyên kurdên li Munchenê bîr û baweriyên xwe anîn ziman.

Li gor îstatîstîkên nû li Munchenê nêzikî 20 hezar Kurd dijîn. Pirraniyên wan ji Bakur û Başûrê Kurdistanê ne, ji Rojava û Rojhilatê Kurdistanê jî nêzikî 2 hezar Kurd li Munchenê dijîn. Pirraniya Kurdên bakûr nêzikî 50 sal in li Munchenê dijîn ku ev jî dibe 2-3 jenerasyon.

Di civînê de komeleyên kurd di nava xwe de "Koordînasyona Komeleyên Kurd li Munchenê/(SAZBÛN/KOORDINATION) damezirandin û dixwazin mehê carek bo xebat û danûstandina agahiyan bên cem hev, da ku di raya giştî de deng û navên kurdan bilind bikin û piştgirtiya tekoşîna gelê Kurdistanê jî bikin.

# Keçên Amedê derbî kirin

» Tîma voleybolê ya Buyukşehir Belediyespor di lîgê de di rêza 4. de cîh digire.

Du tîmê voleybolê ya keçên Amedê dawiya hefta borî maçeke derbî kirin. Di maça derbî de Buyukşehir Belediyespor û Dicle Universitesi SKS rastî hev hatin û Buyukşehir Belediyespor (Şaredariya Bajarêmezin) 3-1 biser ket.

Tîmên voleybolê yên ku di Lîga Jinan a Aroma de cih digirin, hefta borî bihev re maçê kirin. Maç di salona Zanîngeha Dîcleyê de hate leyîstin û seta pêşî Buyukşehir Belediyespor 25-21 biser ket; seta duyemîn tîma Zanîngeha Dîcleyê bi encama 25-14 skorê kir 1-1 û di seta dawî de Buyukşehir Belediyespor 25-10 û 25-13 kete pêş û 3-1 maçê bidest xist.

Tîma Şaredariya Bajarêmezin, Buyukşehir Belediyespor di lîgê de yak favoriyê şampiyoniyê ye.




# Eganispor li forvetan digere



Bi mebesta ku ji binî tabelleyê xilas bibe, Erganispor hewl dide ku kadroya xwe nû bike. Di navbera sezonê ya zivistanê de Erganispor di kadroya xwe de hinek guhertin çêkir û niha jî pêdiviya wê herî kêm bi sê forvetan heye.

Bêhnvedana zivistanê bo gellek klûb û tîman dibe dema guhertina kadroyê. Erganispora ku sala borî serkeftinên girîng bidest xistin û karî derbasî lîga 3. bibe, di nîvê sezonê de performanseke xirab nîşan da û tenê 10 puan standin. Erganispor niha di tabelleyê de di rêza herî dawî de cih digire û tenê 10 pûanên wê hene; di pênc maçên dawî de Erganispor 4 car têkçûye û tenê di maçekî de wekhev maye û pûanek standiye.

**Erganispor hewl dide ji binî lîgê ber bi jor ve here: 3 forvet lazim in**

Di bêhnvedana zivistanê de rêvebirên Erganisporê kadroya xwe di ber çavan re derbas kirin û hinek guhertinan kirin. Tîma zer û reş di vê navbera sezonê de kadroya xwe di 4 maçên testê de ceriband û her çar maçan jî bi serket. Erganispor hewl dide ku 3 forvetan jî transfer bike û nîvê sezonê bi serkeftinan derbas bike.

Serokê duyemîn yê Erganispor Cemal Dolu ji malpera Diyarbakirsoz re ragehand ji bo karibin derbasî jor bibin pêdiviya wan bi kadroyeke xurt heye û got, “Di avêtina golê de kêmasiyên me hene. Lewma pêdiviya me herî kêm bi sê forvetan heye. Me di bêhnvedanê de 15 futbolvanên nû transfer kirin.”

# Duhok dibe xwediyê holeke basketbolê ya modern




Yaneya Duhokê ya werzişî wê bibe xwediyê holeke basketbolê ya navnetewî û tê çaverêkirin ku di demeke nêzîk de di nav avahiya yaneyê de dest bi karê wê bê kirin.

Efram Ebdilehed serpereştê vî projeyê ji AKnewsê re got, bi birê 5□5 milyar dînarên îraqî (3,6 milyon euro) û bi serpereştiya şîrketa Zinar wê bi sîstemeke modern dest bi çêkirina holeke werzişî bê kirin.

Ebdilehed diyar kir ku van rojan wê kevirê binyatî bê danîn□û got, “Maweyê projeyê 600 roj in, wê beşê cihê 4000 hezar temaşevanan bike ku wê li ser rûberê 5000 metrên duca bê avakirin.”

Tê zanîn yaneya Duhokê ya ku di sala 1970ê de hatiye damezirandin, di van salên dawiyê de bi yariyên basketbolê şiyaye kontrolê li ser xul û qehremaniyên Îraqê û Herêma Kurdistanê bike, niha tîmên wê li ser lîsteya her du xula ne, ji bilî wê derbasî yariya dûmahiyê ya kûpaya Îraqê bûye.



# Şanoya kurdî ‘Dîsko 5 No’lu’ ket nav pênc lîstikên herî baş

Fatma Savci

Malpera ntvmsnbc ku li Tirkiyeyê malpereke naskirî ye, her sal li ser fîlm, album û pirtûkên salê yên herî serkeftî lîsteyekê çêdike, îsal di 1ê Çileya 2012yê de, şanoya kurdî "Dîsko 5 No’lu" jî wek lîstika salê ya herî baş hilbijart. Şanoya "Dîsko 5 No lu" ku juriyê malperê yek ji pênc lîstikên herî baş diyarkirin, qala zilma zindana Amedê dike. Şanoya ku ji hêla Mîrza Metîn ve hatiye nivîsîn û derhêneriya wê jî Berfîn Zenderlioglu kiriye, yek lîstikvan tenê, ango Mîrza Metîn di dikê de dilîze û li gor rexnegirên şanoyê performanseke gellekî baş nîşan dide. DestAr Theatre bi vê leystikê zilma ku di 1980yî de, li zîndana Amedê pêkhatiye bi awayekî profesyonel li ber çavan radixîne. Beriya niha jî DestAr Theatre bi lîstika xwe ya "Cerb" xelata "Xelatên Şanoyê a Lîons " ê girtibû.

Navê şanoyê, her çiqasî ji hêla gellek Kurdan ve were zanîn jî, dîsa gelekî bala mirovan dikişîne. Me ji nivîskarê şanoyê Mîrza Metîn pirs kir ka çima "Dîsko" û çima 5 No, û bi vî navî û bi vê şanoyê dixwazin çi peyamê bidin. Metîn bibîr xist ku ev lîstik li ser wehşeta dagirkeran e, ne li ser berxwedana Kurdan e û got, “Berxwedana 5 No’lu mijareke pir bi hêz e û ji vegotina wehşeteke bixwîn zêdetir şayanê vegotinê ye. Lê belê ev ji bo me mijareke lîstikeke cuda ye." Derhenêra lîstikê Berfîn Zenderlioglu jî got, "Wek hûn dizanin 5 No’lu, navê qawîşa disiplînê ya zindanê ye. Ango îşkencexaneya leşgerî ye û cihê ceribandineke qirkirina Kurdan e."

### Bi taybetî li bajarên Tirkiyeyê leyîstine

Mîrza Metîn debarê pêvajoya nivîsîna şanoyê agahiyên balkêş dan û got, "Çawa ev her du peyvên Dîsko û 5 No’lu hatin ba hev, di mêjiyê min de, wêneyê wehşetê çêbû. Pîrevokek, mêşek, mişkek, kûçikek, gardiyanek û girtiyek di laşekî de, (di lîstikvanekî de) tên ziman û tên lîstin. Ev lîstik wehşeteke li derveyî mirovahiyê, hovîtiyeke ku hiş û mêjiyê mirov ranagire vedibêje." Metîn diyar kir ku ew dixwazin vê mijara zilmê bi rexneger û nivîskarên tirkan baştir bidin fam kirin û lewma bi taybetî li bajarên Tirkiyeyê wek Stenbol, Îzmîr û Enqere lîstine. Metîn got divê tirk rastiyan fêr bibin û wiha dom kir: "Mijareke tije êş e. Dema min nivîsî ez gelekî giriyam. Ev lîstik ji bo Kurdan bîranînek e. Divê neyê jibîr kirin." Lîstikvanên DestAr Theatre gellek girîngiyê didin zimanê zikmakî û hemû lîstikên xwe bi kurdî dileyîzin.

**Hemû rolan Mîrza Metîn bixwe dileyîze**






### “Dema em karên baş û profesyonel dikin çapemeniya tirkî me dibîne”

Li ser pirsa me ya ku hilbijartina şanoya we ji hêla malpera ntvmsnbc çi hest bi we re afirand, Zenderlioglu got: "Em kêfxweş bûn. Heya niha çapemeniya tirkî ev tişt û berfemên bi kurdî nedîtine. Lê niha mecbur dimînin bibînin. Ji ber şert û merc guherîn û em Kurd jî karên baş û profesyonel dikin. Rexnegirên şanoyê tên lîstikên me temaşe dikin û li ser wan dinivsînin û dinirxînin.” Lîstikvan Mîrza Metîn jî got ev serkeftina hunerê ye û dom kir. “Mijara me mijareke polîtîk e, di mêjiyê temaşevanan de hêmayeke rast e rast ya polîtîk dihêle. Loma jî salon tije dibin. Lê şanoger ji eleqeya çapemeniya kurdî gazincan dikin. Şanoger Berfîn û Mîrza me agahdar dikin ku lîstikek wan a bi navê Antîgone 2012 heye ku mijara wê şervanên bê goristan in.

# Hunermendên Başûrî bo Wanê alîkarî civandin


Wêne: Rûdaw

» ‘Konser bo Wanê’ li Kelarê, Hewlêr, Silêmanî û Dihokê hatin li dar xistin û 12 hunermendên stranbêj û helbestvan beşdarî kirin.

Barzan Mihemed

Bi mebesta alîkariya derbiderên erdheja bajarê Wanê û derdora wê, 12 hunermendên stranbêj û helbestvan li Başûrê Kurdistanê tevlî çend konseran bûn. Konsera yekemîn roja 4ê Çileyê li bajarê Kelarê birêveçû, piştî sê rojan jî li Hewlêr, Silêmanî û Dihokê konser hatin sazkirin.

Rojnameya Çetr bi hevkariya komeleya hunerî ya Dîcle saz di bin nave ‘Konser bo Wanê’ de ev konser saz kirin û ev hunermend stran gotin: Hesen Heyas, Îmad Hewlêrî, Melek Rojhat, Kawe, Behroz Tewekulî, Canê, Lalo Rencder, Bilind Îbrahîm û Çopî; Helbestvan Şêrko Bêkes jî helbestên xwe xwendin. Herwiha helbestên Dildar jî di wan konseran de hatin xwendin.

Edîtorê rojnameya Çetr û yek ji sazkerên konseran Şoreş Mistefa ji Rûdawê re ragihand: “Bo van konseran me 10 hezar bilêt amade kiribûn, nirxê her bilêtekê jî 10 hezar dînar bûn, lê hinek welatiyan sed hezar dînar dixistin nava sandoqa alîkariyê, em ê hemû dahatan jî bişînin ji qurbaniyên erdheja Wanê re.”

Derbarê dahata ku ji wan konseran hatiye komkirin, Şoreş got: “Em hê jî nizanin çiqas pere hatine komkirin, lê her çiqas bê komkirin em ê di civîneke çapemeniyê de ragihînin û dû re jî bişînin ji qurbaniyên bajarê Wanê re.”

# “Jina kurd bi sê zincîran hatiye dorpêçkirin”



» Tirkiye, Kurdistan û tevahiya mirovahiyê wê gewherek dîrokî mîna Heskîfa 12 hezar salî winda bikin.

Alejandro Haddad helbestvan û dokumentarîstek Arjantînî ye, sê dîwanên wî hene û ya dawî bi navek kurdî “Gula Gulistanê” derketiye. Alejandor sê dokumentar jî çêkirine, yek ji wan li ser Bendava Ilisu bi navê “Av Su Mai” çêkiriye û niha jî bi çêkirina dokumentarek li ser jina kurd mijûl e, navê wî jî “Somos Kurdas Somos Jardín de Rosas” ango “Em Kurd in Em Gulên Gulistanê ne”. Di serdanake bo Madrîdê de em rastî Alejandor li Doner Kebab Xalo hatin û me vê hevpeyvînê pê re çêkir.

**Te çawa doza netewa kurd nas kir?**

Tiştê min berê li ser Kurdan dizanîbû ku ew gelek êş û zor ji destê Saddam dîtibûn, min nizanîbû ku Kurd li welatên din jî dijîn. Berî çend salan min gotarek di rojnameyeke arjantînî de xwendibû li ser têkoşîna jinên PKKê û li ser çand, ziman û têkoşîna gelê kurd bu. Piştî wê ez pêrgî kurdekî li Guatamala hatim û wî ez vexwendim Yekemîn Hevdîtina Civakî ya Mezopotamya. Di 2009ê de ez wek rojnamevan çûm Bakurê Kurdistanê û min doza kurdî ji nêz ve naskir.

**Projeya kişandina dokumentarek li ser bendava Ilisu çawa derket holê?**

Di wê hevdîtinê de ji min hat xwestin ku ez dokumentarek li ser bendava Ilisu bikşînim, min jî ev daxwaz pejirand ji ber ku ezmûna min di vî warî de hebû, berî wê min dokumanterek li ser bendavekê navbera Arjantîn û Paraguay çêkiribû, ji ber avakirina wê bendavê gelek gund bin avê de mabûn, 200 hezar kes ji warê xwe koçberbûn, sosretek xwezayî rûdabû ji ber mirina gelek ajal û cureyên şênkahiyê. Eger projeya bendava Ilisu biçe serî wê heman sosretê li herêmê çêbibe.

**“Av Su Mai” ji bo çi te ev nav hilbijart?**

Eger ev bendav çêbibe sê gel wê ziyan ji vê projeyê bibînin, yê pêşîn jî gelê kurd e. Herwiha Tirkên ku li wê herêmê dijîn, wê ji herêma derdora bendavê bêne koçberkirin. Tirkiyê, Kurdistan û tevahiya mirovahiyê wê gewherek dîrokî mîna bajarê Heskîfê ya xwedî 12 hezar sal jî winda bikin. Bendav wê herikandina avê ji Îraqê re jî kêm bike û wê bandorê li gelê ereb jî bike. “Av Su Mai” navê avê bi kurdî, tirkî û erebî, ew jî bal dikişîne li ser krîza ku wê ji ber avakirina bendavê çêbibe.



**Di dokumentarê de jineke ji Elihê gazî dike ji ber ku dewlet sozên xwe yên ji bo dayîna erdekî çandinê, avakirina zanîngehan...hwd bi cih neanîne?**

Hemû sozên dewletê derew bûn; heman tişt li herêmekê Arjantînê rûda, dema bendavekê çêkirin soz dabûn nişteciyên wê herêmê lê sozên xwe pêk neanîn. Ev jina ku tu behsa wê dikî neçar mabû ji gundê xwe derkeve. Jiber projeya bendava Êlihê û li derdorê bajarê Êlihê bi cih bûne nêzîkî erdekî ku ne ya wan e û ne ji çandinê re dibe. Ew ne tenê ji erda çandinê mehrûm bûn herwiha ji avê jî. Dewlet gundên wan di bin avê de hîştin niha jî bê av mane. Av rojane tenê di şevê de carekê bo çend demjimêran tê. Li aliyê din jî dokumentar xuya dike, hinek malbat ku bendav bandor li wan nekiriye û li gundên xwe mane çawa debara xwe dikin û jiyaneke xweş dijîn.

> **Min tenê zilma Saddam ya li Kurdan dizanî, min nizanîbû Kurd li welatên din jî dijîn.**

**Gelo ti sûd ji avakirina van bendevan nîne?**

Nexêr, eger bendava Ilisu ava bibe wê tenê ji % 2 elektrîk bide Tirkiyeyê û wê 80 hezar kes ji warê xwe koçber bikin û ev rêjeya ji % 2 ji bo kê ye? Dema ez li wir bûm rojane elektrîk dibirîn. Di Heskîfê de ne tenê dîroka Kurdan heya dîroka tevahiya mirovahiyê jî li wê gundê ye, divê ev bajar ji wendabûnê bê rizgarkirin.

**We stranek spanî “Dad, Xak û Azadî” bo dokumentarê danî...**

Bi rastî veqetandin vê stranê ya herî dijwar bû di dokumentarê de, ji ber ku me dixwest stranek hebe li ser têkoşîna gelan biaxive, straneke ku behsa têkoşîna kurdan bikira wê bihate sansûrkirin. Dokumentar bê astengî di Festîvala Yilmaz Guney li Êlîhê û li festîvalekê li Stenbolê hate nîşandan.

**Niha jî tu dixwazî ronahî bidî ser têkoşîna jina kurd...**

Ez bawer dikim bê jinan azadiya gel negengaz e, jin xwediyên tovê jiyanê ne. Ew bi awakî xwezayî memoriya gelan ji wendabûnê diparêzin. Ku em wan bidin aliyekî em dîroka xwe jî didin aliyekî. Mebesta min ku cîhan bi rêya naskirina têkoşîna jina kurd têkoşîna gelê kurd jî nas bike. Dixwazim bi rêya vê xebatê bal bikşînim li ser hewldana jinê ta ku azad be û xwediya laşê xwe be.

Jina kurd bi sê zincîran hatiye dorpêçkirin: zincîra navnetewî ji ber ku li tevahiya cîhanê tundî li dijî jinê heye ev jî bandorê li jina kurd dike, di nav dewletên ku jina kurd lê dijî zincîrek din heye ew jî zincîra hikûmeta ku mafên gelê kurd binpê dike û li dawiyê zincîra beşekî ji civaka kurd ku ew jî mafê jinan binpê dike.

***Hevpeyvîn: Zinar Ala***

# Kurdistan di kitêbeke kevin a 250 salî de




Siyaweş Goderzî

Li wê taxa ku em lê dijîn, hinek kesên Swêdî hene ku gava ji kitêbên xwe yên kevin bêzar dibin, yan ku bi xwe mirin bi rêya merivên wan, li heman odeya avêtina ziblê li qorzîkekê kitêban datînin. Daku hinek kesan xwestin pirtûkan ji xwe re bibin. Her li wî cihê heya vêga min gelek kitêbên kevin û binirx ên îngilîzî û swêdî li ser keviya zibilxanê hilgirtine û li cem xwe parastine.

**Castin Niebuher**

Yek ji wan kitêban, sefernameya Castin Niebuher e ku di salên 1760î de hatiye welatên Erebî, Kurdistan û Tirkiyeyê. Li gor biryara paşayê Danîmarka di sala 1761ê de ew rêwîtî bo matematîkzan û stêrnas Castin Niebuher ligel çend zanayên din tê sazkirin. Sala 1766ê Castin bi rêya Bexdayê digihîje Musil û pişt re Mêrdîn, Amed û Riyayê. Niebuher di bîranînên xwe de heya ji Amed û Riha derbas dibe qala Kurdan dike. Herwiha li hinek cihan di vê nivîsarê de jî peyva ”Kurdistan” li ber çav dikeve.10-12 salan piştî rêwîtiya Castin, keşe û mamosteyê olzan ê navdar yê zanîngeha Uppsala bi navê Samuel Odmann sefername bi zimanê swêdî di sala 1787ê de li Stockholmê li çapxaneya Kongl Ordens-Tryckeriet çap dike.

Dibe ku li Swêdê û piştî zêdeyî 250 salan tenê çend mînakên herî kêm ji kitêbê li ber dest mabin, ew jî bi piranî li kitêbxaneyên mezin ên Swêdê ne. Niha yek ji mînakên vê kitêbê li ba min heye.

Di vê pirtûkê de di gelek cihan de ji rûpelê 426 bi şûn de heya 446 qala Kurdan tê kirin û li hinek cihan jî navê Kurdistanê hatiye nivîsandin. Ev kitêb di aliyê dîrokî de pirr girîng e bo Kurdan û bo selimandin û ronîkirina hinek kêşeyên erdnîgarî çavkaniyeke girîng a dîrokî ye.

Gava Castin Niebuher berî 250 salan, di sala 1766ê de qala peyva Kurdistanê di sefernameya xwe de dike navê çend dewletên netewî weke Îraq, Tirkiye û Sûriye hê nebûn.



# Nûnerê mezin ê komîteya mafên mirovan a ser bi NY li Îraqê Francesco Motta:

# Em ji rewşa azadiya ra û nêrînê li Herêma Kurdistanê dilgiran in

» Pêşketineke mezin di aliyê rewşa zindaniyên Herêma Kurdistanê de çêbûye û deriyên zindanên xwe ji me re vekirine

*Nûnerê mezin ê komîteya mafên mirovan a ser bi NY li Îraqê Francesco Motta, heftiya borî tevlî konferansa ragihandina pilana karê herêmî yê mafên mirovan li Herêma Kurdistanê bû ku li bajarê Hewlêrê hat sazkirin. Motta di hevpeyvînekê de ligel Rûdawê, derbarê azadiya ra û nerînê û azadiya kombûnê li Herêma Kurdistanê qala dilgiraniya rêxistina xwe dike û kifş dike ku di raporta xwe ya îsal de ev dilgiranî belav kirine.*

**Rûdaw: Gelek gotin li ser rewşa mafên mirovan li Herêma Kurdistanê hatine kirin, raya we di vî warî de çi ye?**

**Motta:** Her weke hemû welatekî din li cîhanê, kêşeyên Kurdistanê jî yên taybet hene. Li hember rêzgirtina azadiya ra û nerînê dilgiraniya me heye û heya cihekî jî nîgeraniya me heye li hember îdarekirina dadwerî, lê di hundirê çend salên borî de bi baweriya min Kurdistanê bi mebesta çareserkirina wan meseleyan gavên girîng avêtine û di wê baweriyê de me jî ku hikûmet bo çareserkirina van kêşeyan bi cidî di hewldanê de ye. Di baweriya min de ev konferans yek ji wan gavan e da ku hikûmet û saziyên civaka sivîl bi hev re rûnin qena çareyekê ji van pirsan re bibînin. Ji ber ku erê hê jî kêşe hene ku rastî vê herêmê tên, lê di heman demê de jî Kurdistan xwedî destkeftên mezin e û proseya wê ber bi pêş diçe û wisa bawer dikim Kurdistan kariye ji parçên din ên Îraqê re bibe mînak.


Wêne: Rûdaw

**Ew gav çi ne ku pêwist e hikûmeta Herêma Kurdistanê bide, da ku rewşa mafên mirovan li vê herêmê baştir bike?**

Rêya herî baş ew e ku hikûmet proseyekê peyrew bike ku wisa dike welatiyên ji rêzê di destnîşankirina siyasetên hikûmetê de û di dezgehên hikûmetê de reformkirin û pêşxistina civakê de beşdariyê bikin. Bo hemû welatekî vê cîhanê jî, ger bixwaze pêş bikeve, pêwist e welatiyên asayî tevî proseya siyasî bike, heya ku siyasetê wan xwestekên xelkê nîşan bide û bi vî rengî jî, hikûmet nayê dîtin ku dijî xelkê ye, lê tê dîtin ku ser bi xelkê ye û ev wateya rastî ya demokrasiyê ye. Hest jî dikim ku kar li vir ber bi pêş diçin, lê dem pêwist e.

**Ger Herêma Kurdistanê ligel welatên deverê û Rojhilata Navîn di aliyê mafên mirovan de berhev bikin, Kurdistan di kîjan astê de ye?**

Xaleke pir baş a hikûmeta Herêma Kurdistanê ew e ku li hember vê meseleyê û kêşeyên mafên mirovan rûyê xwe vekiriye, ew bi ciddî dixwazin kêşeyan nehêlin. Ku ev jî tişteke berovajî hinek ji desthilatdarên welatên deverê ye û mirov hest dike ne amadebûnek heye ku bi awayekî eşkere qala kêşeyên mafên mirovan li welatên xwe bikin, lê her weke min amaje dayê, di baweriya min de ku hê jî gelek kêşe li Kurdistanê hene, lê eger bi vî rengê nîşan dane berdewam bin, êdî siberojeke çirûskdar li benda herêmê ye.

**We hertim di raporên xwe de derbarê Herêma Kurdistanê dilgiraniya xwe li hember rewşa azadiya ra û nêrînê ragihandiye, niha vê rewşê li Herêma Kurdistanê çawa dibînin?**

Bi dîtina min ev herêm, herêmeke konservatîv e û hinek caran jî sînordariyeke çandî heye ku rê li ber kesekî digire bi tevahî bikare raya xwe nîşan bide. Lê dîsa jî divê civak bi xwe xwe pêş bixe û hewl bide xwe biguherîne, heya ku ev prose pêşde herin. Herwiha hinek made di yasaya cezakirinê ya Îraqî de hene ku azadiya ra û nêrînê dikin tawan. Ku ev rê xweş dike da ku rojnamevan li gor vê qanûnê bên dadgehkirin û zindankirin, tenê li ser wê yekê ku nêrîna xwe nivîsîne yan jî rapor li ser mijareke weşandine, di baweriya min de ev jî kêşeyên mezin in ku pêwist e rastî wan bên û divê desthilatdar fêr bibin ku ger kesek rexneyan li wan bigire, ne xeter e. Voltaire dibêje: "Dibe ku ligel nêrîna te ne hemfikir bim, lê heya mirinê bergiriyê li mafên te dikim da ku wan nîşan bidî."

**Derbarê rewşa zindanî û zindanên Herêma Kurdistanê, we çend caran di raporên xwe de amaje da ku rewşa zindanên Herêma Kurdistanê divê bê baştirkirin, niha hun vê rewşê çawa dibînin?**

Di baweriya min de pêşketineke mezin di aliyê rewşa zindaniyên Herêma Kurdistanê de çêbûye û desthilatdarên Kurdistanê jî deriyên zindanên xwe ji me re vekirine û me serdana pirraniya zindanan kiriye û rê li ber me nehatiye girtin. Hikûmet jî li hember kêşeyên zindanan pir vekirî bû û carna jî daxwaz ji me kirine alîkariya wan bikin bo çareserkirina wan kêşeyan. Lê em dilgiran in, nemaze ji yasaya dijî terorê ku bi rêya wê dikarin xelkê heya demên dirêj di nava zindanan de bihêlin bêyî ku wan dadgeh bikin.

**Derbarê rewşa mafên mirovan li seranserê cîhanê rapora salane ya saziya we heye û her sal jî qala xirabiya rewşa mafên mirovan li Îraqê û Kurdistanê dikin, îsal jî hûn bi niyet in vê raporê belav bikin?**

Erê, em rapora sala 2011ê di destpêka meha bê de belav dikin û beşek jî ji rûpelên Îraqê bi Herêma Kurdistanê taybet dibe.

**Hûn dikarin wan xalan ji me re kifş bikin ku li ser Herêma Kurdistanê di rapora we de dibin?**

Min qala hinekan li jor kir, weke ew kesên ku li gor qanûna dijî terorê tên girtin, yan dilgiraniya me li hember azadiya ra û nêrînê û azadiya civînan. Lê dîsa divê xelk fêr bibin ku çawa van mafan bikar tînin.

**Par, gelek bûyerên şîdetê li Herêma Kurdistanê qewimîn û gelek xwenîşandan li herêmê çêbûn, bi baweriya we par salekê xirab bû bo Kurdistanê di aliyê binpêkirina mafên mirovan de?**

Na, bi baweriya min ew gaveke girîng bû li Kurdistanê. Carna civak zexel dibe, lewma carcaran baş e ku dengê nerazîbûnê ji civakê bê bihîstin.

***Hevpeyvîn: Hawar Ebdulrezaq***

## Li ser navê wî du gund û 7 gor hene

# Dixwaze muzexaneya mayînan ava bike, lê destûr nayê dayîn

» Ew weke Hoşyarê mayînhilgir tê naskirin; heta niha li hinek deverên Herêma Kurdistanê bi giştî zêdeyî 2 milyon mayîn ji bin axê derxistine. Ew dixwaze xebata xwe têxe nava dîrokê.

Kawe Şêx Ebdulla

Hoşyarê mayînhilgir şeş meh in bo avakirina muzexaneyekê kar dike ku naxuyê li ti devereke cîhanê muzexaneyeke weke wê hebe, ew jî muzexaneya mayîn û teqemeniyan e. Hoşyar dibêje bi vî karî dixwaze ku dîrokekê bo nifşê nû binivsîne da ku bawer bikin ji ber wan çekên qirker çi belayek hat serê xelkê Kurdistanê.

### 2 milyon û 386 hezar mayîn ji nav birine

Hoşyar Elî (48) xelkê gundê Biyawêle li Bakurê Helebçe ku gundê wan tenê 5 km ji bajar dûr e. Hoşyar niha li piraniya navçeyên Başûrê Kurdistanê ji ber serkêşiya wî di hilgirtina mayîn û teqemeniyan de bûye navekî naskirî: "Di nava 26 salên kar de di nav zeviyên mayînan de li deverên cihê yên Kurdistanê, min 2 milyon û 386 hezar mayînên cuda teqandine yan pûç kirine." Her çiqasî hinek kes van hejmaran weke zêdegaviyê dibînin, lê Hoşyar dibêje ew dikare belge nîşanê wan kesên bike ku baweriyê pê nakin. Ligel vê yekê jî hinek ji wan kesên ku di warê hilgirtina mayînan de kar dikin, vê karê Hoşyar şaş dibînin ku ji ber xwe vî karî dike, di baweriya wan de pesindana karê wî jî wisa dike kesên din jî xeletiya wî dubare bikin.

### Jineke japonî xanî jê re kiriye

Mala Hoşyar li taxa mamosteyan e li Helebçe ku bi xwe dibêje rojnamevaneke japonî jê re kirîye. Hoşyar aleke Japonyayê li ser banê xwe neqişandiye, bi tîpên japonî hinek tişt li ser dîwarê hewşê nivîsandine. Niha ew mal bi mayîn û teqemeniyên cuda tije ye, ji gulleyên demançeyan heya weke bombeyên qirker tê de hene.

Nikarî wê hezkirina bêsînor a Hoşyar bo wan çekan paşguh bixî, cama otomobîla wî ku ew jî diyariya Japoniyan e û pişta wê bi mayîn û teqemiyên pûçkirî tije ye, wêneyê mayînan lê daye û li hewşa wî nîşana seriyekî di sêgoşeyeke sor de daniye ku ew bo tirsnakiya wê male amajeyek e.







Hemû wêneyên vê rûpelê: Rûdaw

Hoşyar li wî cihê ku bi niyeta avakirina muzexaneya xwe ya ecêb e ku li ser bajarê Helebçe yê kîmyabarankirî dinêre, bo Rûdawê axivî: "Dixwazim dîrokekê binivsînim, her çi mayîn û teqemeniyên min ku li mal hene dixwazim deynim vê muzexaneyê, her çekek li ser Kurdan hatibe tecrûbekirin datînim muzexaneya xwe, lê serokê hikûmeta Herêma Kurdistanê nahêle vê yekê bikim."

Belgenameyekê nîşan dide ku bo dirustkirina muzexaneya xwe razîbûna pirraniya herî zêde ya dezgehên hikûmî li ser heye, lê di dawî de di roja 11ê Cotmeha 2011ê de civata wezîran "na" da projeyê û qebûl nekir.

### 56 tonên TNT û milyon mayîn û teqemeniyên cuda cuda amade ne

Hoşyar diyar dike ger rê bidin muzexaneya xwe ava bike 58 ton madeyên TNT amade ne ligel zêdeyî milyon mayînên cuda û dibêje: "Her çekek li ser Kurdan hatibe tecrûbekirin li vê Îraqê mayînakeke min jê heye, dixin muzexaneya xwe de. Bo dîrokê vî karî dikim û piştrast im nifşên bê êdî baweriyê bi tiştekî nakin eger bi xwe nebînin." Hoşyar jidil dixwaze girîngiya karê xwe ron bike.

### Li Zaxo û Pênciwîn du gund navên xwe guhertin

Hoşyar dema 15 salan mêvanê Japoniyan bû, niha xwe deyndarê wan dibîne, çûyîna wî bo Japonya û mabûna wî li wir wê dema dirêj karekî wisa kir ku navê Hoşyar li Kurdistanê zêdetir belav bibe, her çiqasî li devera Pênciwîn û Zaxo du gund navê xwe guherandine ser navê wî weke wefadariyekê bo paqijkirina gundên wan ji mayînan.

Gundê Kurî Geple li Başûrê Pênciwîn ku niha ligel Îranê dergehekî nefermî yê sînorî ye, ji ber ku Hoşyar ew ji mirina mayînan rizgar kirin, navê gundê xwe guherandin ser Hoşyarî û ji bilî navê gund dergeh jî her bi hoşyarî tê binavkirin, li navçeya Zaxo jî rûniştevanên gundê Hîzabad navê xwe guherîn ser Hoşyar Abad.

"Wê roja ku rûniştevanên Hoşyarî bo alîkarîkirina wan bikim hatine ba min, kurekî me yê piçûk miribû min nehişt ew bizanin neçûme ser goristanê û xizmên min term binax kirin û ez bi xwe ligel wan çûm, ew karê min tenê bo Xwedê û xaka Kurdistanê bû."

### 7 gorên wî li Îraq, Îran û Japonyayê hene û hê jî zindî ye

Sala 1986ê gava Hoşyar dibe pêşmergeyê YNKê, şerê Îraq û Îranê gihiştibû gopîtka xwe, herdu dewletan xaka Kurdistanê ji aliyê başûr û rojhilat bi mayînan pîs dikirin. Her wê demê yek ji pêşmergeyên serkêş bû û bi berdewamî li pêş bû. Piştî 3 salan, li çiyayê Bemo li devera Derbendîxan, mayîn lingekî wî jê dikin. Piştî serhildanê lingê xwe yê din jî ji ber mayînan ji dest dide.

Hoşyar got: "Ji ber neştergerî û jêkirina beş bi beş a lingên min, niha li du bajarên Îranê û Kurdistanê û Japonyayê 7 gorên min hene. Lê hê jî her zindî me."

### Gendeliya bi mayînan

Piştî sala 1993ê Kurdistan bû buhişta saziyên biyanî ku li dû mayînan digeriyan bo rakirina wan, xelkê Kurdistanê bêyî ku pîvanên navdewletî yên rakirina mayînan bizanin gilî li wan saziyan dikirin ku di karên xwe de sist in. Carekê kovareke tinazpêker karîkatûrek resimandibû wateya wê ew bû du mayîn gotûbêjan dikin, ji ber derketina otomobîla saziyeke hilgirtina mayînan, mayînek dixwaze bireve, ya din dibêje neçe rûhê min "MAG" e; ew sazî di paqijkirina xaka Kurdistanê ji mayîn û teqemeniyan de karekî berçav kir.

Par rêveberiya karûbarên mayînan li Silêmaniyê, li dadgehê bi tometa ku karên Hoşyar serê wan gêj kiriye doz dijî Hoşyar tomar kir, vê dozê galegaleke mezin çêkir û li Helebçe xwenîşandaneke mezin dijî wê dozê hat sazkirin.

Hoşyar dibêje li vî welatî bi mebesta hilgirtina mayînan gelek pere vala çûn: "Saziyên vî warî gendeliyeke mezin dikirin. Di hundirê wan salên ku ez weke nepisporekî hesêb kiribûm, min 93 gir, 540 hezar donim ji mayînan paqij kirin ku pir zêdetir e ji 2 milyon û 386 hezar mayînan. Min 160 term û birîndar ji nava zeviyên mayînan derxistine."

### Heya mirinê ligel mirinê

Hoşyar naxuyê hê jî betilî be ji wî karê ku lingên xwe tê de ji dest dan; kareke wisa ye ku xeletiyeke piçûk xeletiya dawî dibe, her weke li ser hemû mayînekê hatiye nivîsandin. Ji Hoşyar pirsiyar bikî heya kengî di vî karî de berdewam dibî, di cih de dibêje: "Heya mirinê, du tişt dikarin min ji vî karê min dûrxin pîrî û bêhêzî yan mirin.



## Herêma Kurdistanê: Tundûtûjî berbi kêmbûne ve diçe

*Rûdaw - Rêveberiya Giştî ya Dûvçûna Tundûtîjiya Dijî Jinan li Herêma Kurdistanê îstatîstîkên derbarê tundûtûjiya li hemberi jinan di sala 2011ê de belavkirin. Di van îstatîstîkan de derdikeve holê ku li Kurdistanê tundûtîjiya dijî jinan kêm bûye. Her li gor van statîstîkan, bêtirîn jin li Hewlêrê hatine kuştin û li Silêmaniyê jî tundûtûjiya seksî dijî jinan gellek bû. Derbarê şewitîna jinan de, di statîstîkên sala 2011ê de derdikeve ku şewitîn û xweşewitandina jinan kêm bûye. Lê dîsan derdikeve ku bêtirîn bûyerên şewitîn û xweşewitandina jinan li Silêmaniyê bû, li Dihokê jî hejmar weka sala borî ne.*

### Piştî kuştina Arzûya 18 salî

# Jinên reviyayî ji jiyana xwe ditirsin





**Azad Dîcle**

Piştî ku di van demên dawî de revandin û kuştina çendîn keçên kurd di medya almanî de deng veda, metirsî bi hinek jinên bi tenê dijîn re jî çêbû. Gulan K. yek ji wan jinan e ku êdî Almanyayê ji bo jinan welatekî ewle nabîne, lê H. F. dibêje "nîvê ewlekariyê di destê jinan de ye."

Roja 15ê vê mehê laşê keça kurd Arzû Ozmena 18 salî, ya ku ev du meh û nîv winda bû, li nêzîkê Hamburgê, li kêleka golekê, di bin axê de hate dîtin. Roja 1ê Mijdara 2011ê, Arzuya ku ji malê reviyabû, li bajarê Detmoldê ji mala hevalê wê yê xort ê alman hatibû revandin û ev du meh û nîv bûn ti agahî ji wê nedihat standin. Bûyera Arzuyê bandorek wiha kir ku êdî keç û jinên kurd yên ji malê reviyayî jî êdî gumanan ji ewlekariya xwe bikin.

Gulan K. niha 22 salî ye û li bajerekî herêma Nordrhein-Westfalen dijî. Dema ew16 salî bû, bi zorê ji aliyê dêbavê xwe bo qelenekî zêde bi kesekî nenas û temenê wî 3 qatî yê wê re hat zewicandin. Gulan tenê salekê bi wî zilamî re zewicandî maye û paşê jê veqetiyaye û vegeriya mala bavê xwe. Lê ji ber ku debavên wê xwestina careke din wê bi zilameke din re bizewicînin, ew ji malê derketiye û li bajareke din yê Almanyayê xwe gihandiya mala hewandina jinan. Ew nêzîkî 4 mehan di mala hewandina jinan de maye û piştî ku psîkolojiya wê baş bûye ew ji wir derketiye. Gulan dibêje "Ji ber min dibistana xwe nivco hîştibû, karmendên mala hewandinê bo min alîkarî kirin ku ez karibim dibistana xwe berdewam bikim." Gulanê payîza borî li bajarekî herêma Ruhrê ya Nordrhein-Westfalenê dest bi dibistana kar kir û di heman demê de jî xaniyekî biçûk bo xwe kirê kir. Gulan ji aliyekî ve diçe dibistanê û ji aliyê din ve heftiyê çend rojan li benzinxaneyekê kar dike.

### Mifteçêker xwestiye destdirêjî wê bike

Gulan pirr bi hişyarî tevdigere, ji ber ku jiyana wê ew fêrî vê yekê kiriye. Gulan behsa chirokeke beriya chend rojan qewimî dike. Dema Gulan paqijiya derenceyên xaniyê xwe dike, mifteyê xwe di derî de ji bîr dike û li derve dimîne. Bi alîkariye cîranekî xwe telefonê şîrketeke mifteçêker dikin da ku werin deriyê wê vekin. Gulan serpêhtiya we bi çavekî girîn wiha vedibêje: "Zilamek hat û di nava deqeyekî de deriyê min vekir. Ji ber ku mifte neşikand û derî ji cih dernexist, min got wê 50 Euro bixwaze. Lê dema ku fatura dagirt, ji min pirsî ka ez bi tenê dijîm yan na. Min jî got erê. Paşê pirsî ka hevalê min heye yan na. Ez ji pirsên wî aciz bûm û di heman demê de tirsiyam jî. Lê dema ku ji min re got hê dema min pirr heye, ez ê pereyê mifte ji te nestînim, em bi hev re serê xwe bişon, ez qêriyam û min jê xwest ku mala min biterikîne. Lê beriya ku here, fature dagirt û min dît ku 177 Euro heqdest nivîsandiye."

## Gulan: Polîs nekarî Arzûyê biparêze, wê çawa min biparêze?

Gulan ji wê rojê û şûnde ditirse, digirî. Dema em jê diprsin ka çima ew neçûye li cem polis gilî nekiriye, ew dibêje, "Ez naxwazim têkevim dadgehan û lêpirsîna polîsan. Wê ji min bipirsin ka şahîdê min heye yan na. Yan jî wê bifikirin ku ji ber ez naxwazim wan 177 Euro bidim, lewma giliyê zilam dikim." Peyvên Gulan yên dawî hemû rewşa wê tîne ber çavan: "Eger polîs karê xwe bi başî bikira, wê ewqas jin nehatina kuştin û yên ku hatin kuştin jî, weke Arzuyê, wê kujerên wan bihatana girtin." Lê Gulan ne tenê ji bo jinên kurd ên bi tene dijîn, ji bo hemu jinên bi tene dijîn, Almanyayê ewle nabîne.

## F.H.: Ewlekarî di destê jinê de ye

### "Ez dizanim çawa xwe ewle bikim"

F.H. jî jineke kurd ya ciwan e ku ev 3 sal in ji zilamê xwe cuda bûye û li bajarê Hagenê li Almanyayê bi tenê dijî. F.H. di saziyeke dewletê ya fermî de heftiyê 5 rojan karmendiyê dike û nêzî mala bavê xwe di xaniyekî biçûk de dimîne. Ew jî weke Gulanê di bin bandora bûyerên kuştina jinan de maye, lê weke Gulanê tirseke rojane pê re çênebûye: "Sedemê ku ez xwe ewle dibînim, yek: ez nêzîka mala bavê xwe dijîm, du: pênc rojên min di kar de derbas dibin û sê: ez baş dizanim çi tişt serê min diêşînin û çi tişt min ji pirsgirêkan diparêzin."

F.H. diyar dike ku ew li Almanyayê hatiye dinyayê û li vir mezin bûye û çûye dibistanê, lewma ew xwe weke jineke alman ya azad hîs dike û dema rastî pirsgirêkek herî biçûk bê, polîs agahdar dike. Piştî ku ji zilamê xwe veqetiyaye, demekê zilamê wê li dû wê geriyaye, lê ew dibêje, "Min dema ji polîs re got ew min aciz dike, polîsan ew hişyar kirin û qedexe lê anîn ku nikaribe 100 metreyan xwe nêzîkê min bike. Herwiha wê demê ez li mala bavê xwe dimam û wan jî parastina min dikirin."

# Ezmûna min li Kurdistanê

## Ji ofîsa Clinton bo ofîsa Rûdawê

**Reina Saiki ***




Çiya, holik û avdestên rojhilatî. Dixwazim vekirî binivîsim, lê belê bêyî ku hesta ti kesî birîndar bikim. Ev ew tişt in ku bi wan diramiyam ku berî sê heftiyên bo kar herime bajarê Hewlêrê li Kurdistana Îraqê. Derbarê geştkirina bo Kurdistana Îraqê zanyariyên pir kêm hebûn û agahiyên ku ketin destê min bi rêya çend blog û malperên geştkirinê bûn. Kêmbûna agahiyên min derbarê civak û çanda kurdî sedemekî din ê wê şokê bû ku dema daketina min li firokexaneya navdewletî ya Hewlêrê ku avahiyeke çirisandî û modern e û xwediya pêşketîtirîn sîstema ewlekariyê ye, rastî hatim. Tiştê ku bû sedemê matmayîna min ew e ku li firokexaneyê avdesta rojavayî hebû.

Her çiqasî ez vêga xwendekara masterê me, lê min berê bo demekê li ofîsa serokê berê yê Amerîkayê Bill Clinton li navçeya Harlem a bajarê New Yorkê kar kiribû. Wek lêkolînvaneke warê siyaseta derve ku karê min amadekirina raport û kurtkirin bû, bi vî rengî min di dema serdanên serok de bo welatan alîkariya wî dikir. Her çiqasî min agahî û raport li ser welatên cihê kom dikirin, ji Ewropayê bigire heya Asyayê û hinek welatên ku zêde nayên naskirin wek Makedonya, mixabin qet Kurdistan li ser lîsteya karên me nebû.

Piştî gihiştina min bo Kurdistanê, gelek kesên herêmî derbarê bîr û baweriya min li ser Hewlêr û Kurdistanê pirs ji min dikirin. Min jî ji wan re digot ku mezinatî û modernbûna bajêr bûye cihê matmayîna min. Min di wan gotûbêjan de vekirî digot ku berê gava bi Kurdistanê diramiyam, wêneyê welatekî paşketî di mejiyê min de bû, welatek ku li jêr çewisandin û bordûmanên Saddam Huseyîn de hê jî di rewşa rabûnê de ye. Bi baweriya min ne yekem biyanî me ku bi nezaniyeke wisa kifş, lê bê hemd hatime Kurdistanê. Her wek min berê got agahiyên min ên rast derbarê Kurdistanê pir kêm bûn.

Ji ber ku herêm bi xurtiyeke zêde xwe modern dike, kar û avahiyên cûr bi cûr ên nû sal bi sal bilind dibin û ev jî wisa dike ku ew agahiyên kêm derbarê Kurdistanê ku li ser înternetê hene kevin bixuyin.

Ew derfet ji min re çêbû ku ligel waliyê Hewlêrê Newzad Hadî rûnêm, wî jî li ser dîroka bajarê Hewlêrê ku wek bajarekî herî kevin ê cîhanê tê naskirin, ku heya vêga jiyan lê berdewam e, çend agahî dane min. Esera gelek kesan li ser Hewlêrê maye her ji Aşûrî û Îraniyan bigire heya weke Rom û Moxolan. Keleha Hewlêrê ji hemû cihan zêdetir şûnşopa şaristaniyên kevnar e û dîroka çandî ya zengîl ya herêmê li ser maye.

Tiştê ku vê girîngiya dîrokî tekûz dike, pêşveçûna lezgîn a bajêr e ku bere bere dike bibe dilê aboriya Îraqê.

"Me di sala 2004ê de li vê herêmê bi butçeya salane ya 4 milyar dolaran dest pê kir, di 2011ê de butçeya me gihişt nêzîka 10 milyar dolaran" Hadî wisa got. Navbirî herwiha got: "Em alîkariya sektora taybet dikin ku zêdetir çalak be. Niha bi nêzîka zêdetir ji 11 milyar dolaran hilberîn ji aliyê sektora taybet tê encamdan. Hewlêr dike bibe paytexta aboriya Îraqê û navendeke mezin a ticaretê."

Ev li bajar diyar e. Ew molên ku min serdana wan kir pir mezin û paqij in û hevrikiyê ligel molên Amerîka dikin. Parkên zêde yên ku li Hewlêrê hene bo reva ji kolanên tije wargeheke baş in. Li gor Hadî, li Hewlêrê zêdeyî 190 hotêlan hene ku mêvanên hemûyan hene, nemaze di havînê û dema bêhnvedanê de. Doktorên pispor li nexweşxaneyên Hewlêrê kar dikin ku xelk ji hemû deveran serdana wan dikin û zanîngehên taybet û dibistanên navdewletî lê hene.

Li derveyî Hewlêrê, derfeta min çêbû ku serdana hinek deverên din ên Kurdistanê jî bikim. Bajarê bi coş û heyecan Silêmanî bi dîmenên ciwan hatiye dorpêçkirin. Min Dihok û çiyayên li derdora wê jî dîtin. Min xwezaya Kurdistanê ya dilrevîn dît.

Dîmenên herêmê ne tena tişt bûn ku bûn cihê matmayîna min. Mêvandariya Kurdan, xwezaya wan ya baş û kenê wan ê jidil û hezkirina wan bo fêrbûna tiştên nû, bûn cihê matmayîna min. Xelkên vir ne tenê hewl didin alîkariya te bikin, lê pêkutiyê li ser alîkariyê dikin. Bi ser de jî li herdu welatên min, yanî Amerîka û Japonya, kêm caran nebe mirov rastî mêvandarî û dilovaniyeke wisa nayê.

Di encama hevpeyvînên ku min ligel parlamenter û lîderên partiyan kirin, min nas kir ku di qada siyasetê de, Kurdistan dixwaze bihêz bibe. Şaş mam ku tevî dehsalên sitemê, gelê kurd di aliyê siyasî de zehf geşbîn e. Dibe ku ji ber kontrolkirina wê zilm û sitemê be ku dikarin bêyî ketina li dû rabuhuriya xwe bo siberoja xwe pilanan deynin. Baweriyeke baş ya gel û siyasetvanan bi nasnameya xwe heye û li hember herêma xwe kedar in.

Bêguman Kurdistan ne cihekî bê kêşe û asteng e. Hevrikiya Tirkiye û PKKê nêzîkî sînor, hikûmeta herêmê xistiye pêgeheke dijwar li hember Tirkiyeyê ku bûye hevbeşekî aborî yê girîng ê herêmê. Her çiqasî asta jiyanê li bajarên mezin bilez ber bi başbûnê diçe, piraniya gund û navçeyên li derveyî bajarên mezin ji ber hejariyê dinalin. Ew zibila zêde ku li ser kolanan tê dîtin cihê şaşbûnê ye, çiku Kurd şanaziyeke mezin bi jîngeha xwe ya xwezayî dikin. Rêxistina lêborînê ya navdewletî çend raport li ser rewşa xirab a zindanên Kurdistanê weşandine û daxwaz ji hikûmeta Herêma Kurdistanê kiriye ku rewşa girtî û girtîgehan baş bike.

Lê nayê înkarkirin ku di aliyê siyasî û aborî de û li ser asta herêm û cîhanê, Kurdistana Îraqê dike bibe lîstikvanekî serekî. Li deverekê ku demokrasiya derengmayî tije ye, aboriya vejiyayî ya Kurdistanê û pêşketina wê ya siyasî hêjayî wêya ne ku li ser asta navdewletî zêdetir bên piştgirîkirin.

Newzad Hadî hevdîtina me wiha xilas kir: "Me di dema buhurî de gellek êş kişandin û niha em xwediyên xwe ne. Lê em qet bi tolstandinê naramin. Qet. Ji dêvla vêya, em li ser pêşvebirina herêm û bajarê xwe terkîz dikin da ku em alîkariya gelê xwe bikin."

Ji parlamenterekî temsîlkirî ve heya yek ji zengîltirîn rêveberên şîrketên Îraqê û bo hevkarên min li Rûdawê û wî ciwanê ku li kolana Îskan CD difirotin, hemû ew kesên ku min ew dîtin pir şanaziyê bi Kurdistanê dikin, lê di heman demê de mirovên sade ne. Li vir xelk bi rêya samanê xwe dernaxin û derxistina zêde ya bi samanê li Kurdistanê ne tiştekî qebûlkirî ye, ev jî berevajî welatên zengîl ên din li Rojhilata Navîn. Tevî pêşketina herêmê û samana wê ya herdem zêdebûyî, wisa diyar e ku mikurhatineke negotî heye ku ji bilî Kurdistan çiqasî bipêş dikeve, hesta yekîtiya xelkê naguhere. Di wê baweriyê de me ku rêzgirtina takekes, malbat, civak û Kurdistanê ew buha ne ku bi giştî li cem siyasetvan û bazirgan û lîderên civaka sivîl û welatiyan hezkirî ne û hewl didin van tiştan biparêzin ku herêma wan ji cihên din cuda dikin.

*__*Reina Saiki__ xwendekara mastera zanistên siyasî ye li zanîngeha Harvard a Amerîkayê. Di 3 heftiyên borî de perwerdeya karê rojnamevaniyê li Rûdawê li Hewlêrê didît.*

---



## Dewleta Tirk dixwaze çi bike ?

**Ahmet Dere**

Li Bakurê Kurdistanê û li Tirkiyeyê rewşekê pirr awarte heye. Ji destpêka salê vir ve bi sedan Kurd hatine girtin, hêzên ewlekariya dewletê avêtine ser malên rayedarên BDPê û cihê karê wan. Bi awayekî din, mirov dikare bêje; li Tirkiyeyê terora dewletê dimeşe, ji Kurdan re mafê jiyanê nayê nas kirin.

Di van kiryaran de rola AKPê çî ye û dewlet dixwaze çi bike?

Beriya her tiştî divê were zanin, bi taybetî ji 12ê Hezîrana 2011ê bi şûn de, ku di navbera AKPê û dewletê de ti cudahî nemaye; AKP dewlet e, dewlet jî AKP ye. Derbarê Pirsgirêka Kurd de pêvajoyekê nû di rojeva dewletê de ye. Di çarçoveya vê pêvajoya nû de « çareseriya Pirsgirêka Kurd » jî heye. Lê belê ev « çareserî » tenê li gorî daxwazên dewletê tê bipêşxistin. Li gorî wê divê Tevgera Azadiya Kurd (PKK, KCK, BDP û hwd.) were tesfiye kirin, an jî bêhêz bibe. Digel şertên zehmet ên zivistanê em dibînin ku operasyonên leşkerî bê navber dewam dikin. Wisa diyar e ku wê heman operasyon heya dawiya salê nesekinin.

Di paralela van operasyonên leşkerî û polisan de, AKP dixwaze hêzeke « kurd » jî biafirîne. Di aliyekê de Kurdên li dora AKPê têne bikaranîn, di aliyê din de hin şexsiyetên kurd, yên ku ji aliyê raya giştî ve hatine nas kirin, têne amade kirin. Li gorî ku ez dişopînim, di pêvajoya vê salê de AKP dixwaze encamekê bigire.

Bêguman ev stratejiya AKPê, an jî ya dewletê, ji derveyê însyatîfa hêzên navneteweyî bipêş nakeve. Li gorî min, Amerîka û Yekîtiya Ewropayê vîze dane Dewleta Tirk. « Çareseriyek » ji bo Pirsgirêka kurd dikare bikeve xizmeta berjewendiyên van hêzên navneteweyî jî. Hebûna Pirsgirêka kurd êdî ji aliyê van hêzan ve nayê bikaranîn, divê wêneyê Tirkiyeyê û herwiha yê rewşa Kurdan biguhere.

Ji niha ve dixûyê ku wê sala 2012ê pirr dijwar be. Daxuyaniyên rayedarên KCKê jî di vî warî de îşaretan didin. Ev jî tê wateya gurbûna şer, mezinbûna hejmara kuştiyan, ya birîndaran, ya girtiyan û hwd.

Hêviyên me hebûn ku di 2012ê de gelê kurd yê li bakurê welat bikaribe, weke pirraniya gelên cîhanê, di nava rewşekê aştiyane û aramiyê de bijî. Mixabin wisa diyar e ku îsal jî gelê me rehetiyê nabîne. Hêvîdar im ku ez xelet bim, rewş berevajî naveroka vê nivîsa min bipêş bikeve.

# Sedemên rengbûna diranan û çareserî



Gellek kes sedemê zerbûn û reşbûna diranan ji xwe dipirsin, lê hinek kes di wê baweriyê de ne ku sedemê rengwergirtina diranan girêdayî jiyan û temen be, lê pispr dibêjin ku mirov dikare bandora wan li ser rengbûna diranan kêm bike yan jî nehêle.

**Li gor pisporan sedemê zerbûn û reşbûna diranan:**

• ***Xwarin û vexwarin:*** Çay, qehwe, xwarinên rengdar, hinek cûreyên fêkiyan weke kartol û sêvan diranan rengîn dikin.

• ***Guhdan û paqijkirina diranan:*** Neşûştina diranan bi firçe û derman, bikarneanîna tayê diranan, wisa dike ew madên ku diranan rengîn dikin ligel madên nexweşker weke plak (pêmaya xwarinê) li ser rûyên diranan bimînin.

• ***Derman:*** Hinek cûreyên derman û bikaranîna wan bêyî şêwira doktor dibin sedemê rengkirina diranan. Mînak bikaranîna tetracycline bo kesên li jêr 18 salan, dibe sedemê zerbûna diranan ku spîkirina wan dijwar dibe. Jinên ducanî û şîrder eger tetracycline bixwin diranên zarokên wan zer dibe, herwiha hinek cûreyên dev paqijkirinê jî weke klorhexîdin eger bi çewtî bên bikaranîn diranan rengîn dikin.

• ***Şan:*** Hinek kes ji ber şanên di nava wan de diranên wan rengîntir û zertir dibin.

> Divê diran rojane herî kêm du caran, nemaze berî raketin û piştî xwarinê baş bên şûştin.

• ***Temen:*** Bilindbûna asta temen wisa dike çîna derve ya diranan rengê çînên jêr werbigirin.

• ***Madên dagirtina diranan:*** Hinek madên tijîkirina diranan weke emelgem ku di nav xelkê de wek platîn tê naskirin, dibe sedemê jidestdana rengê diranan, lewma doktorên diranan van madeyan bo diranên pêşî bikar nayînin.

• ***Sedemên jîngehê:*** Dibe diranên xelkê navçeyekê ji xelkên devereke din spîtir bin, ji ber cudahiya ava vexwarinê.

• ***Cixare:*** Cixare yan dûman kişandin.

• ***Ketin:*** Berketina her tiştekî bihêz bo diranan dibe ku bibe sedemê mirina diran û jidestdana rengê wî.

• ***Cûreyên çareseriya nexweşiyan:*** Hinek cûreyên çareseriya nexweşiyan dibin sedemê zerbûna diranan, wek kesên ku rastî çareseriya kîmyewî tên, herwiha hinek nexweşiyên jinên ducanî jî di siberoja de dibin sedemê renggirtina diranên zarokên wan

**Xweparastin û çareserî**

• ***Paqijiya diranan:*** Rojane şûştina diranana herî kêm du caran, nemaze berî raketin û piştî xwarinê.

• ***Vexwarin:*** Kesên ku qehwe û çayê rojane vedixwin pêdiviya wan bi şûştina zêdetir ya diranan heye.

• ***Benîşt:*** Cûtina benîşt bo nehiştina renggirtina diranan baş e.

• ***Tayê diranan:*** Bikaranîna tayê diranan alîkarekî bo nehiştina renggirtina diranan baş e, ger tenê rojane carek be jî.

• ***Serdankirina doktor:*** Serdankirina doktorê diranan her 6 mehan carekê pêwist e bo zanîna saxlemiya diranan.

• ***Nexweşî û sedemên nediyar:*** Kesên ku diranên wan ji ber nexweşiyan yan her sedemekî nediyar zer bûne divê serdana doktor bikin bo spîkirina wan, jiber ku teknîkên cuda yên spîkirina diranan hene.



## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Pale pê zad diçinin – Tiral, bêkar, zugurd. 2- Nezer, tîrên çav – Almanak, nameya salê – Êşkence, lêzan, êş. 3- Desthilatdar, erkdar – Li hedefê xistin, rastanîn. 4- Ekonomîst, pisporê aborîyê – Navenda elektrîkê. 5- Tembûr, aletên muzîkê (berepaş) – Notayek – Agir e, şewat e, pizot e. 6- curm, êş, mehkûmî (berepaş) – Xwelî, arî, toz. 7- Di dîrokê de dewletek Kurd (berepaş) – Roj, tav. 8 – Doktor – Piştî, tiştên hilgirtinê, erk (berepaş) – Cok, rêya avê, kanala piçûk (berepaş). 9- Xwedîlêderketin, himandin. 10- Ji dil, canan (berepaş) – Cejn e, şahî ye.

**Serejêr:** 1-Şermezarkirin, mehkûmkirin, dadgehkirin. 2- Şêwe, şikil, hawe – Balkişandin, hilberîn, piçûkxistin. 3- Polîtîka, şêwr û mişêwrên dûr û nêzîk – Du tîpên gotina “padî”. 4- Darek, fêkîyek (berepaş) – Cînar, kesên mala wan nêzîkî mala mirov e. 5- Rêz, hawîr – Hunermendekî Kurd-Ermenî (berepaş). 6- Hêsîrî, bindestî, koletî – Vergî, zikat. 7- Henek, laqirdî, kêf – Deng, awaz. 8- Di trafîkê de sembola Hollandayê – Piçûktî, gedetî, mindaltî, sebîtî. 9- Paytextê Tirkiyê – Kevirek giranbuha û bi qîmet, almas (berepaş). 10- Erd, xak, xwelî (berepaş9 – Bi “neftê” ve girêdayî, tiştên ji neftê. 11- Notayek – Newala çem, newala avê. 13- Namûs, heya, agir. 14- Heywan, lawir, dirinde. 15- Ezman, asîman, hewa (berepaş). 16- Navekî zilaman, tehto.

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | | | ■ | | | | | |
| 2 | | | | | ■ | | | | | | | | ■ | | | |
| 3 | | | | | | | | ■ | | ■ | | | | | | |
| 4 | | ■ | | | | | | | | | | | | | | |
| 5 | | | | ■ | | | ■ | | | | | | | | | |
| 6 | | | | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 7 | | | | | | ■ | | | ■ | | | | | | | |
| 8 | | | ■ | | | | | | | | | | | | | |
| 9 | | ■ | | | | | | | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | |

**Bersivên hejmara 129**

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | M | E | D | ■ | B | A | A | S | ■ | T | E | K | A | Z | E | N |
| 2 | A | Z | A | D | Î | X | W | A | Z | ■ | K | A | D | Î | N | Î |
| 3 | R | E | W | A | N | D | I | Z | ■ | Î | S | F | A | H | A | N |
| 4 | Î | Z | E | K | ■ | Z | A | M | Û | N | ■ | Î | R | A | D | E |
| 5 | F | Î | T | ■ | Î | N | ■ | Ê | L | Î | | | | | | |
| 6 | E | ■ | N | L | ■ | K | A | R | Û | Ş | | | | | | |
| 7 | T | R | A | I | N | ■ | V | ■ | Z | ■ | | | | | | |
| 8 | ■ | A | M | B | E | R | ■ | Î | ■ | Î | | | | | | |
| 9 | A | Z | E | R | B | E | Y | C | A | N | | | | | | |
| 10 | M | A | ■ | E | Û | ■ | A | A | R | E | | | | | | |

# Meab ji ber nexweşiya çavên xwe tê Almanyayê



Meab sê salî ye, ew ji Başûrê Kurdistanê, ji gundê Barzan e. Meab ji ber nexweşiyek giran a çavan, yek salî çavekî xwe winda kir. Ji bo parastina çavê din, pizîşkan Meab bo tedawiyê şandin Almanyayê û ew divê ji bo kontrolê serê çend mehan carekê bê nexweşxaneyeke bajarê Essenê.
Di dema dawî de hêviya başbûnê zêde bûye û çavê Meab ber bi başiyê ve diçe. Em hevîdar in ku di demek herî zû de Meab bigihije tendirustiyek baş.

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

## Ev çi heywan e?



Hejmaran li gor rêzê bi hevdu girêbide û paşê birengîne. Te ev heywan nas kir?

## Mors

Mors li bakurê Gronlandê, li derdorê Derya Qeşayê bi garanî (ango bi komî) dijîn. Mors ji malbata fokan e û dikare ji çar metreyî dirêjtir bibe û nêzîkî 2000 kîloyî jî giran bibe. Mors bi qîlên xwe mîdya û hesenîkên binê deryayê radike û dixwe.



Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafik

## Dîwarê Çînê



Dîwarê Çînê anjî "Bedena Çînê" dîwarê herî dirêj li cîhanê ye û li gor pîvanên sala 2009ê dîwar 8851 km dirêj e. Beriya 1600 salan dest bi çêkirina vî dîwarî hat kirin û avakirina wî 200 salan domand. Dîwarê Çînê (bi zimanê çînî: çángçéng, ango "bedena dirêj") ji gellek birc û diwarên qalind pêk tê. Ev dîwar li bakurê Çînê ye û ji bo parastina welatê Çînê ji êrişên derve hatiye avakirin. Dîwar gellek caran di şer de hatiye ruxandin û ji nû ve hatiye avakirin. Îro dîwar cihekî herî naskirî ye li cîhanê û salane bi milyonan turîst serdana vî dîwarî dikin.